# Şer gihîşt Bexda'yê

Rojhilata Navîn bi şerê ku DAIŞ'ê li Iraqê da destpêkirin zivirî cihê heşermeşerê û hemû hêz û dewletên li herêmê bi fikar li rewşê temaşe dikin. Ji ber ku hêzên navneteweyî heta niha neketin navberê bi taybetî Iraq li ber parçebûnê ye. DAIŞ'ê çav berdaye Bexda'yê û şer her diçe dibe pevçûna Sunne û Şiiyan. Bêyî Kurdistanê li Rojhilata Navîn cihekî ewle nema. ➜ 5



BasNûçe
HERDEM RASTÎ
ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL
HEJMAR 9 • 21 - 27 HAZÎRAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM

# Aktor êdî kurd in


➜ 4



Li Rojhilata Navîn bi destpêkirina êrîşên DAIŞ'ê ve şerên mezhebî û dijminahiyên kevn jî careke din rûdan. Herêm li qonexek ku 'agir dibare' asê ma. Ji ber ku hemû hêz û dewletên Rojhilata Navîn li ser şerê DAIŞ'ê di nava hesabekî de ne, Herêma Kurdistanê bi tena sere xwe bû cihekî ewle ji bo pênaber, kêmnetew û komên olî.

Polîtîkaya aştiyane ya Barzanî û hewlên çareserkirina nakokiyên herêmê bala cîhanê dikşîne û li qada siyaseta navneteweyî dibe cihê spasdarî, piştgirî û pesnan. Rêvebirên frensî û emerîkî bi riya telefonê xwe gihandin Barzanî û hem ji bo nêzikahiya Kurdistanê ya bi ewle spasiyên xwe pêşkêşkirin û hem jî li dijî rawestandina DAIŞ'ê doza hevkariyê kirin.

➜ 13

## 'Lîstikên jina' hatin ser dikê



Jinên kurd ji bo rewşa jinê ya di nava civakê de bidin nîşandan û bidin fêm kirin serî li hunera şanoyê didin.

➜ 16

## Sîdar: Dengê rock a kurd



Piştî konserekê dadger ji Sîdar re dibêje 'te bi kurdî li gitarê xistiye' û çar meh cezayê girtîgehê jê re dibire.

## Roza Şêx Seîd



28 Hezîrane 1925 de Mehkemeya Îstîqlalî qerarê xo aşkera kerdî. Bi Şêx Seîd Efendî ra çewres û hewt kesî cezaya îdamî girewte. Hucre de qerar teblîxê serewedartoxan bi.

➜ 6-7

## Çiya, newal û Colemêrg



Li ser çiyayên Cîlo, Sat û Reşko, golên qrater hene. Gola Gelyana li Çiyayê Reşko, ji deryayê 2950 m bilind e. Dirêjî û firehiya golê 300m û 250 m ye. Golaşîn, Seyidxan û Golan jî li ser Çiyayê Reş in.

➜ 2-3

## Hikûmet hat damezrandin



Hikûmeta nû ya ji 24 wezîrên bê jin pêk tê, li Parlamentoya Kurdistanê sonda yasayî xwarin. Nêçîrvan Barzanî bû Serokwezîr û kurê Celal Talabanî, Qûbad Talabanî jî wek cîgirê serokwezîr hat destnîşankirin. ➜ 11

# Dergehê çiya û newalan: Colemêrg

WELAT BAZ

Colemêrg an ji bi navekî din Hekkarî, di navbera Geliyê Zê û li Rûbarê Qatramîs de hatiye avakirin. Bajêr li tixûbê Başûr û Rojhilatê Kurdistanê, di nav eyaletên Botan, Behdînan û Zagrosê de cîh digre. Bi gotineke din, Colemêrg Bakûr, Başûr û Rojhilatê Kurdistanê digîjine hev.
Pîvana xaka bajêr 9521 $km^2$ ye. Xaka Colemêrgê % 87,6 ji çiyayan pêk tê, % 2,1 deşt û % 10,3 jî plato ne. Hekkarî welatê çiyaya ye. Çiyayên vê deverê bilind, asê û rênedarin. Erdima Colemêrgê ji % not ji bilindahiyan pêk tê. Noqta herî bilind Girê Gelyêşîn e (Reşko), ku 4135 metre bilind e. Li rojavayê bajêr Çiyayê Kela Memê, Katoyên Jîrkan û Xelîlan heye. Li başûrê vê sîlsîleyê Tanînan destpêdike. Ev rêzeçiya û gir, bi lûtkeyên tûj ji hev diqetin. Di nav wan de newalên kûr û raser ku tê de çem û avên bilez diherikin, hene. Li rojhilatê Çiyayên Reş digîjin Katoyan. Xelekên Zagrosan wek hîlalekî ber bi başûr ve diherikin. Tixûbên her sê perçên Kurdistanê li ser girên Zagros digîjin hev.
Li ser erdnîgara Colemêrgê di hindir de jî çiyayên wek, Durek (4060m), Maûnsel (3850m), Gelyano (3650m), Garê (3460m, Gewerokê (3356m), Termo (3275m), Barêdalo (3250m) Çiyayê Reş (3630) û Cîlo, Berçel, Çarçel, Simbil, Şehîdan, Sinaht, Govend, Semadar û Rojger mîna xencerên tûj ber bi asîmanan ve dikşên. Bi gelemperi ev çiyayên hanê bi navê Çiyayên Colemêrgê tên naskirin. Ew jî wek baskên Çiyayên Torosên Rojhilat ê dawîn in.
Li ser çiyayên Cîlo, Sat û Reşko, golên qrater hene. Gola Gelyana li Çiyayê Reşko, ji deryayê 2950 m bilind e. Dirêjî û firehiya golê 300m û 250 m ye. Golaşîn, Seyidxan û Golan jî li ser Çiyayê Reş in. Li ser Çiyayê Satê jîi hin golên biçûk hene.
Çiyayên Hekkarî piranî li seriya 3 hezar metreyî bilind in. Lat û zirweyên van çiyayan ji qeşayê ne û derûdora lûtkeyan jî her tim bi berfin. Di zivistana sala 1969'an de hatiye tesbîtkirin ku li van çiyayan 5 metre û 65 santîm berf ketiye.
Hin quntarên çiyayên Colemêrgê bi daristanan ve hatine xemilandin. Darên quntaran bi piranî berûne.
Li deverên bilind jî darên merx ku zivistanê pelên xwe naveşînin hene. Di salên dawîn de daristanên Colemêrgê ji alî artêşê ve hatine şewitandin. Herwiha bizin û erezyon jî xesarên mezin dane daristanan.
Taybetiyeke van çiyayan jî zozan û beriyên bilind û firehin. Zozanên herî



bilind û fireh Zozanên Gewerokê ne ku 2 hezar metre bilindin.
Helbet pîroziya van çiyayan a herî bilind ewe ku, bûne paristgeha hebûna netewa kurd. Folklor, ziman û çanda kurdan li pişt van çiyayên asê ji qirêja asîmîlasyonê dûr maye. Ji ber vê yekê yê ku di nav çiya û însanan de evîneke mezin heye.
Çiyayên Hekkarî hêlîna gelek cûrên lawirane jî. Li van çiyayan heywanên nêçîrê ê wek, bizin û miyên çiyê, li hêla Şemizdîna û Çelê hirç, rovî, gur, keroşk, kew û werdek peyda dibin.
Di erdîma heremê de geliyên navdar jî hene. Di navbera çiyayê Termo û Tanîn de Geliyê Xabûr, di navbera çiyayê Cîlo û Satê de Geliyê Avaşîn, Geliyê Zê û li rojhilatê Çolemêrgê jî Geliyê Şemzîna.
Deşta serekê li herema Hekkarî Deşta Gewerê ye. Ev deşt 175$km^2$ fireh û ji deryayê 1900 m bilind e. Ji kiştûkala xaka Colemêrgê berhemên wek genim, ceh, birinc, gûz û titûn û hemû cûrên zebzeyan tê bidestxistin. Titûna ku li ser axa Şemzîna tê çandin li ser rûyê erdê yek ji titûna herî biqalîte ye.

### Bajarê çeman

Li xaka bajêr dû çemên sereke Zê ya Mezin û Zê ya Biçûk e. Dîsa Ava Hêzil, Çemê Nehilê û Xebûr jî ji nav xaka Colemêrgê diherike. Xabûr şaxekî Çemê Dîjlê ye.
Zêya Mezin li Serhedê dest bi rêwîngiya xwe dike û heta ku li Behdînan tevlî Dîjlê dibe, bi sedan km dirêj dibe. Zê ji deverên derbasdibe, li pişt xwe rêçeke kesk û kûr dihêle. Gelek şaxên vî çemî hene. Lê ê girîng dûdûne. Yek ji van şaxan ber bi Alandeştê û Zozanên Nebîrnav ve diherike. Şaxê din ji bilindahiyên Zozanên Cîlo diherike rojhilatê navenda bajêr û li vir digîjin hev. Zêya Mezin piştî ku ji kaş û kendalên Colemêrgê dertê, li heremê geliyên kûr dikole û derbasî Başûrê Kurdistanê dibe.

### Yaqûda şîn: Avaşîn

Zêya Biçûk ji sê milên gir pêk hatiye. Navekî van milan Avaşîn e. E din ji Şemzînan dizê û a sêyem Hacibegê jî ji Çiyayên Oramarê diherike. Piştî ev şax digîjin hev ber bi Başûrê Kurdistanê ve diçin. Herdû Zê jî li herama Zîbar tevlî hev dibin û ber bi Mûsilê ve diçin û digîjin Ava Tîr yanê Dîjlê an jî Tîgrîsê û tev bi hevre berê xwe didin Kendava Basrayê, oqyanûsê.
Ava Zê di jiyana Behdînan de gelek giring e. Wek çavkaniya vê heremê ye. Gelê Behdînan li ser vî çemî gelek lawje, dilok û heyranokan dibêjin. Ev çemê avkesk ku kûrahiya wî digîje dû metreyan gelek cûrên masiyan jî xwedî dike.
Ji bilî van çeman li ser çiyayên ku wolqanên kevnin, dû golên sehol, yanê ku ji ava qeşayê peyda bûne hene. Yek ji van golan li ser lûtkeyên Çiyayên Satê ye ku bi navê Bayê tê naskirin, a din jî li bilindahiyên Çiyayê Cîlo ye û bi navê Gelyana tê zanîn.

### Xizanê welat

Bajarê Colemêrgê di warê aborî de sembola xizaniyê ye. Li bajêr sanayî, fabrîqe an jî kargeh tûnene. Jiyana aborî ku heta salên dawîn li ser lawirvaniyê bû, piştî valakirin û şewitandina gundan û qedexeya zozanan, gundiyan barkirin û lawirxwedîkirin jî nema.
Li gor hijmarên sala 1995an li Colamegê ji hatina salane a netewî a Tirkiyê serê mirovê 950 Dolarê Amerîkî dikeve. Ev hijmar li bajarên ku Tirk dijîn, 8 qat bilindtir e.

### Kilîmçêkerî

Cûmkerî li Colemêrgê di nav hunerê destan de gelek pêşketiye. Tejik û kilîmên Jîrkiyan li hemû Kurdistanê navdayî ye. Di tevna kilîmên Jîrkiyan de pirça bizinan û benikên rîs tên bikaranîn. Ev pirç û rîs bi boyaxên kok tên rengkirin. Ji qalik û pelê gûzê boyaxa reş, ji reheka rîmas rengê bordo, ji çîçeka agirot jî rengên zer û kesk tên derxistin. Di kilîm û tejikên Colemêrgê de bi piranî motîvên miyan, serê beranan, rêça gur, devê gur û xezalan tên bikaranîn. Di şal û şepikên ku di van tevnan de jî tên lidarxistin de, desen û nîgarên sade ku ji xêzên rastin, tên bikaranîn. Li gelek gundên Colemêrgê di malan de hîn jî li ser tevnan ev kilîm û tejik û şal û şapik tên rîsandin. Li nav bajêr jî çend atolyên kilîmçêkeriyê hatiye vekirin û bi dehan keçên Colemêrgî li vir dixebitin. Ew, wek ku li ser tevnên xwe, xem û xeyalên xwe dirîsin. Keda wan, nûra çavên wan û delaliya wan li ser kilîman wek motîvên nemir belavdibe. Tiliyên wan ku wek li ser benikan direqisin, sankî berhemên birih diafirînin.

### Rêvebirî

Bajêr ji ber ku di nav çiyayan de hatiye avakirin, ji hev belavbûye. Tax ji hev dûrin. Di nav bajêr de tenê dû caddeyên mezin hene ku hevûdû dibirin. Li bajêr avahiyên nûjen di 15 salên dawîn de hatin avakirin. Colemêrg li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navê Çelê, Şemzînan an jî Nawşar û Gewerê sê navçe û 106 gund bi bajêr ve girêdayî ye. Nifûsa bajêr li gor daneyên fermî 273 hezar e.
Colemêrg ji bakûr ve cîranê Şirnex û Wanê, ji rojava ve cîranê Mako û ji başûr ve jî cîranê bajarê Aqrê û Zaxo ye.
Şêniya bajêr û nevçeyan tev kurdin. kurdên Colemêrgî bi Zarava Kurmancî diaxifin û ji Mezheba Sunî ne. Heta salên dawîn jî di nav tixûbên Colemêrgê de çend malbatên Suryanî û Nasturî hebûn. Lê niha wan ji ber zextên sazûmanê barkirine.
Piştî geşbûna şer ji ber çewsandinên hêzên dewletê bi hezaran gundî bar kirin û berê xwe dan deverên wek Wan û Başûrê Kurdistanê. Penaberên ku niha

li Başûrê Kurdistanê li nêzî Mûsilê, li kampa Mexmûr dijîn jî bi piranî Colemêrgî ne.

**Bajarê eşîran**

Colemêrg li Bakûrê Kurdistanê sembola eşaîrî û jiyana şûnewarî ye jî. Heta salên dawîn ku şerê çekdarî ê netewî di civakê de hîmên feodalî şikest, bajêr wek panayira eşîran bû. Têkilî û tevgera nav însanan li gor prensîbên eşaîrî bûn.

Hîn jî girêdana eşaîrî di têkiliyên civatê de serdestiya xwe diparêzin. Li herema Hekkarî eşîra ku ji alî şênî ve serdest e Ertûşiyan e. Konfederasyona Ertûş ji 12 eşîrên wek Mamxuran, Xelîlan, Jîrkan, İzdinan, Alan, Şerefxan, Xwewuştan, Qeşûran, Gewdan, Şîdan û Giravdan pêk hatiye. Nawenda konfederasyonê Navça Çelê ye. Li herema Hekkarî, li nawçeyên Gewer û Şemzînan eşîrên Oramarî, Lîrî, Pînyanişî, Herkî, Rêkanî, Dostkî, Dirî, Gûyî, Sertî, Xanî, Gerdî, Xumarî, Zerzî û Nerweyî jî hene.

**Bajarekî firenav**

Li gor dîrokzanê Ereb İbni Harkal ku di sedsala 10an de jiyaye, di demên kevn de navê bajêr 'Hekkariye' bûye. Ev nav ji eşîrekî kurd tê û di Erebî de tê wateya welatê 'Hekkaran'. Eşîra 'Hakkar' wek konfederasyonekî qebîlên Etrûş û Pînyanişan bûye. Navê bajêr di çavkaniyên Ermeniyan de wek 'Ílmar', di ê Suryaniyan de 'Gularmax' derbas dibe. Navê 'Colemêrg' ku niha jî ji alî niştecihan tê gotin, di çavkaniyên Memlûkiyan de jî derbas dibe. Gelê bajêr herdû navan (Colemêrg-Hekkarî) jî bikar tînin.

Dîroka Hekkariyê heta dû hezar sal b.z Îsa direj dibe. Di çavkaniyên kevirîn ê Sumeriyan ê van deman de, ji başûrê Gola Wanê, yanê ji herema Colemêrgê wek 'Welatê Qardûkan' tê bahskirin. Di çavkaniyên Asûriyan de jî Hekkarî wek 'welatê rûbaran' tê binavkirin. Di dema Ûrartoyan de bajarê Mûşaşîr ê pîroz li ser xaka deşta Gewerê hatiye avakirin. Dîsa qralê Persî Darayê Yekem, Gundê Dara li rojhilatê Deşta Gewerê avakiriye. Devera Hekkarî di bîranînên fermandar Ksenefon de jî derbas dibe. Fermandarê Yûnanî di 'Anabbasîs' a xwe de behsa mêrxasiya gelê heremê dike û wan wek 'Kerdoxî' bi nav dike. Ji ber taybetiyên asê ê erdnîgara xwe û gelê xwe yê egît, herema Hekkariyê di demên kevn de serbixwe bûye. Artêşên dewletên serdest zû bi zû neketine heremê.

**Welatê mîrên asilzade**

Nivîskarê Şerefnamê begê kurd, Şerefxan, di berhema xwe de wiha behsa begên Hekkarî dike 'Ew di nav hukumdarên Kurdistanê de bi esalet û taybetiyên xwe yên baş tên naskirin. Ji ber vê yekê Şahê Sefewiya İsmaîl ji mîrê Hekkariyê Zahit Beg re digot Mamo.'

Piştî şerê Çaldaranê, ku Osmanî ketin Kurdistanê, Colemêrg wek emaretekî hat birêvebirin. Heta serê sedsala 20an jî vê rewşa bajêr domkir.


Dawetek Colemêrgê

Di sala 1847'an de Mîrê Hekkarî Nûrûlah Beg tevi Mîrê Botan Bedirxan Beg li dijî Osmaniyan serhilda. Dîsa di sala 1880'an de Şêx Ubeydilahê Nehrî li Hekkarî serhildanekî mezin birêxist. Piştî şikestina vê serhildanê Siltan Evdilhemidê Osmanî li Kurdistan û li Hekkarî jî, li ser navê Îslam û xîlafetê Alayên Hemîdî damezirand û eşîrên Botan û Behdînanê berî hev da û yekîtiya kurdan asteng kir. Ev hêzên eşîran li dijî Ermenî, Suryanî û Rûsan jî bikardianî.

Di dema Şerê Cîhanê ê Yekem de Hekkarî sê sal di bin dagira Artêşa Rûs de ma. Piştî ku Rûs ji heremê vekişiyan Îngîlîz ketin Başûrê Kurdistanê û zabit û karmendên wan li Hekkariyê xebitîn. Ev zabit û mîsyonerên biyanî di faaliyetên xwe de kurd û Ermenî û Nasturiyan berî hev didan. Bi vî awayî gelek car di nav van niştecihên Kurdistanê de gelek bûyerên xirab derdiketin.

Di dawiya sedsala 19'an de 6 qeza, 27 xopan û 768 gundên Hekkariyê hebûne. Nifûsa bajêr di van salan de 180 hezar kurd, 112 hezar Asûrî, 4 hezar Cihû û 3900 jî Ermenî bûne.

Di serê sedsala 19'an de ku li xaka Osmanî bayê netewî destpêkir, li Kurdistanê jî pêla welatparêziyê bilind bûbû. Herema Hekkarî di xebatên Kurdistanî de devereke sereke bû. Seyîd Evdilqadir ku torinê Şêx Ubeydillah bû û li Stenbolê Serokê Şûra ya Dewleta Osmanî bû, di sala 1919'an de bi navê 'Kürdistan Teali Cemiyeti' rêxistinek netewî avakir. Ev rêxistin di demek kin de li seranserê Kurdistanê belav bû.

Di sala 1924'an de Nastûriyên Çelê û Beytuşebabê li dijî dewletê serhildan. Di pêvajoya serhildanê de waliyê Hekkarî ji alî wan ve dîl hatgirtin. Di 4'ê Îlona heman salî de Îhsan Nûrî Paşa yê endamê rêxistina Azadî, ku wê demê li Colemêrgê di nav Artêşa Tirk de zabit bû, tevî leşkerên di emrê xwe de derket çiya û serhilda.

Di sala 1925'an li Colemêrgê Eşîra Gûyî ku bi welatparêziya xwe dihat naskirin, li dijî artêşê serhilda. Li Çemê Şexa di nav hêzên eşîrê û leşkeran de şerên xedar derketin û Tirk ji neçariyê ji heremê vekişiyan.

Di Serhildana Şêx Seîd de, Seyîd Evdilqadirê Serokê Kurdistan Teali Cemiyetî ku ji şêxên Hekkarî bû ji alî Kemalîstan ve li Amedê tevî kurê xwe Seyîd Mihemed û 7 hevalên xwe di 27'ê Gulanê de hatibû bidardekirin. Li ser vê yekê kurê Seyîd Evdilqadir, Şêx Evdila tevî hêzên eşîrên heremê di 10'ê Hezîrana 1925'an de li Şemzîna û derûdorê êrişê meqerên Artêşa Tirk kiribû û tola bavê xwe û hevalên wî sitendibû.

Di sala 1926'an de hêzên Smail Axayê Giravî, dora Hekkarî girtin û sê roj li dijî artêşê şer kirin. Di sala 1930'an de li herema Gewerê Serhildana Oramarê teqiya. Di sala 1933'an de li Şemzîna dîsa serhildanekî destpêkir. Herwiha berxwedanên Xelîl Xoşewî û Ehmedê Mêrgesorî jî ji serhildanên Colemêrgê ne.

Ev serhilderî û dijberiya pargalê li Hekkarî heta salên 1975'an dom kir. Heta van salan li heremê kes nediçû xizmeta leşkerî a artêşê û gel bac nedida dewletê. Têkiliya eşaîrî û a coxrafî bi Başûrê Kurdistanê re, li ser jiyana siyasî a Colemêrgê bandora xwe dikir.


Dîmenek ji Colemêrgê

**Laboratûwara şerê taybet**

Ji hemû eşîrên bajêr gelek kesî li Başûrê Kurdistanê peşmergetî dikir. Gelek fermandarên PDK ya Başûr ji Colemêrgê bûn. Bi sedan xortên Hekkarî di şerê Başûrê Kurdistanê de canê xwe dan. Ev taybetiyên Colemêrgê heta ku li Başûr tevgera netewî têk çû û Mele Mistefa ji welat derket jî ajot. Hekkarî heta wê demê piştcephe ya şerê Başûr bû.

Di têkiliyên Hekkarî û têkoşîna Başûr de hin bûyerên trajîk jî qewimîn. Di sala 1978'an de pêşmergeyên YNK û PDK'ê li çiyayên Hekkariye de şerkirin û bi sedan kes jiyana xwe ji dest dan.

Di dawiya salên 1960'an de Dr. Şivan li herema Colemêrgê dest bi xebatên siyasî kiribû.

Di sala 1979'an de balafirên Îraqê li Çelê gundiyên Bakûrî bombardiman kir û 25 kes kuştin.

Tevgera gêrîlla di sala 1984'an de li navçeyên Şemzînan û Dihê destpêkiribû. Gêrîllayan cara pêşîn xwe li çiyayên Colemêrgê girtin. Piştî ku şer destpêkir, rejimê jî tedbîran sitend. Yek ji wan tedbîran qoricîtî bû. Dewletê ji bo eşîrên Colemêrgê li dijî gêrîlla derxe, bi serekên wan re hevkarî dikir. Dewletê ji aliyekî ve jî nakokiyên nav eşîran duxrand û wan berî hev dida. Bi vî awayî eşîrên ku qoricîtî nedikir di bin tehdîdê de dihişt, da ku ew jî çekên dewletê bigrin. Hekkarî bûbû wek heremeke leşkerî û laboratûwara şerê qirêj. Gundên Colêmêrgê hatin şewitandin û valakirin. Ji bo vegera gundan şertê qoricîtiyê hat danîn. Li dijî gundiyan gelek kiryarên dervayê mirovahiyê jî dihat kirin. Navça Gever, Çelê û Şemzînan gelek car ji alî leşkeran ve hat gullebarankirin. Di salên 1992 û 1993an de bi taybetî Gewer û Çelê di rojên cejnên kurdan de bûn hedefa êrişên hezên rejimê.

# Temînata demokrasiyê kurd in

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ku bi polîtîka û nêzikahiya xwe ya bi diyalog û aştiyanê li qada siyaseta navneteweyî dibe navberkar û derketina wî ya pêş a wek aktorekî Rojhilata Navîn. Nêzikahiya Barzanî ya dûrî pêvçûnan û parastina komên kêmnetew û olî bi taybetî li Ewropa dibe sedema piştgirî û sempatiyek mezin.**

Bûyerên ku piştî bidestxistina Mûsilê û amadekariya êrîşa DAIŞ'ê ya li hember Bexda'yê qewimîn, qrîzê siyasî yê li herêmê ku Malîkî dibe sedem û şerê navxweyî yê li Sûriye dibe sedama encama ku li Rojhilata Navîn kurd wek dengeyê polîtîk bibin xwedî derfetek nû.
Anâlîstên Ewropayî jî kurdan wek hevbendên ku bawerî pê bê, Kurdistanê jî wek herêmeke ewle bi nav dikin. Xala din ku ew kes li ser disekinin jî ev e ku li Rojhilata Navîn bêyî lihevkirina bi kurdan re ku ew li welatê xwe ji siyaseta hişk û bi pêvçûn dûr disekinin, ji mafên jinan re rêzdar in, û mekanîzmayên demokratik bi kar tînin, destpêkek nû pêk nayê bi vê minasebetê tevî ku Rojhilata Navîn ziviriye cihekê şewatê û Kurdistan ji bo kêmnetewan û malê wan êdî cihekî ewle ye, Kurdistan wek hevbendê demokrasiya rojava derdikeve pêş.

**Barzanî aktorê sereke**

Serokê Herêma Kurdistanê Barzanî li qada navneteweyî ji bo hewldanên xwe yên ji bo çareserkirina mijarên ku dibin sedema şer û nêzikahiya xwe ya li hemberî mexdûrên şer tê parzûnkirin.
Wezîrê Karên Derve yê Fransa'yê Laurent Fabius, Barzanî pîroz dike ji bo ku bi paşvekişîna artêşa Iraqê valahiya ewlehiyê ya li herêmê dagirtiye. Fabius piştî dagirkirina DAIŞ'ê ya Mûsilê bi riya telefon li gel Barzanî axivî û spasiyên xwe pêşkêşkir ji bo ku hêzên Kurdistanê valahiya ku artêşa Iraqê hiştiye dagirtiye.
Li agahdariya ku di malpera Serokatiya Herêma Kurdistanê de hat weşantin de hate diyarkirin ku Fabius ji bo ku Kurdistanê deriyên xwe ji kesên ku li Mûsilê direvin re vekirine spasiyên xwe ji hemû Kurdistanê re şandine û ew xal hatin ragihandin, “Fabius xemdariya Serokkomarê Fransa'yê François Hollande bi me re par ve kir. Got ku birêz Barzanî serokekî ku li hember krîz û şer radiweste û hêza wî heye ku welêt bigihîne asteke normal heye.”
Di vê navberê de Cîgirê Serokê Emerîqa'yê Joe Bide jî beriya çend rojan bi riya telefonê li Barzanî gerî û li dijî DAIŞ'ê piştgirî, û alikariya damezrandina hukumeteke nû ya Iraqê xwest.

**Barzanî: Me rapêçkarên Bexdayê hişyarkirin**

Herwekî din Barzanî jî di derbarê bûyerên ku li Iraqê diqewimin de daxuyaniyek weşand. Barzanî ew xal anîn zimên; Herkes dizane ku me rapêçkarên Bexdayê çend caran di derbarê polîtîkayên yek alî ku dibin sedema van tiştan de hişyar kirine. Ev rêvebir berpirsên vê rewşa dawî ne. Me ji bo çareserkirina pirsgirêkan pir ked da. Em wek Kurdistanê ji 2003'an vir ve li dijî şerên mezhebî disekinin. Ji dîrokê virve kurd bûne alîgirê mazlûman. Îro kesên berdêla xetayên xwe didin dîsa dikevin nav xirabiyekê ku ji bo têkçûna xwe kurdan sûcdar bikin. Em amade ne ku li gel birayên xwe yên sunne û şiî li dijî terorê şer bikin. Lê em di şerê li ser navê mezheban de cih nagirin.
Ez ducar dikim ku em wek karkerên xêrê amade ne ku piştgiriya her gavên ku ji bo xêrê bêne avêtin bikin. Lê divê her derdor bizanebe ku rewşeke nû li holê ye û divê tekiliyên me jî xwedî pîvanbin û em ti van têkiliyan de xwedî nêzikahiyek rastîbin.

**Hewldana dîplomasiyê ya Barzanî**

Di vê navberê de berpirsiyarên hukumeta Kurdistanê, di derbarê bûyerên li Iraqê de serdanên welatên cîranan didomînin. Hefteya borî Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî di serdana xwe ya fermî de li Tahranê de mijarên li herêmê pêk hatî nirxand û helwesta kurda ji Îranê re got.
Ajansa nûçeyan ya Îranê IRNA di nûçeya xwe de got ku Barzanî û heyeta pê re bi Berpirsiyarê Encûmentiya Bilind ya Ewlekariya Neteweyî Îranê Ali Şemanî re hevdîtin kiriye. Cîgirê wezareta derve ya Îranê Hasan Emir Abdulahiyan di daxuyaniya xwe de got ku bi Nêçîrvan Barzanî re di derbarê qirîza Iraqê û çawa alîkarî bidin hukumeta Baxdayê axivîne.
Li gor çavkaniyên dîplomatîk, bi rêveberiya Tahranê re piştî ku DAIŞ'ê Musil xist destê xwe û îxtîmala ku Iraq perçe bibe xistin rojeva xwe.

**"Vegera rewşa berê dijwar e"**

Piştî serdana xwe ya Îranê Nêçîrvan Barzanî ji BBC'ê re got ku piştî ku mîlîtanên DAIŞ'ê Musil- Tîkrît û Telefer xistin destê xwe vegera rewşa berê pir dijwar e. Barzanî destnîşan kir ku herêmên sûnne ji hêla hukumeta Iraqê ya şiî ve hatiye îhmalkirin. Barzanî got ku tenê rêya çareseriyê siyaset e û wiha dirêjî da axaftina xwe: "Çareseriyek leşkerî nabe, hewcedariya pêvajoyek siyasî heye. Rêya herî baş ev e ku eşîrên sûnî jî bikevin nav pêvajoyê. Ev ne tenê meseleya DAIŞ'ê ye, mesele ev e ku sunne xwe li hember Bexda'yê îhmalkirî hîs dikin. Divê biryara vê sûnne bidin. Li gor me piştî tiştê ku li Musilê qewimî rêya herî baş wek Kurdistanê herêmek sûnne hebe."



Barzanî li gel Rumsfeld

**Divê Pêşmerge mayînde be**

Ji hêla din ve partiyên siyasî yên herêma Kurdistanê bi serokê herêmê Mesud Barzanî re civiyan û bûyerên dawî nirxandin. Encamnameya civînê di malpera Serokatiya Herêmê Kurdistanê de hat weşandin û ev tişt lê hatin zêdekirin; cihê pêşmerge tê de ye divê mayînde bibe û firotina petrolê berdewam bike. Di civînê de hat gotin ku xetereye ku hin herêmên vala bikevin destê DAIŞ'ê. Bal hat kişandin ku sedema van gengeşiyan bihevnekirina hêlên siyasî û dijberiyên wan e. Bo ku li Iraqê aştî û ewlehî çêbe divê hemû hêlen siyasî bewerî bidin hev û înîsiyatîfek ji hemû kesan pêk tê bê avakirin. Di daxwiyaniyê de hat gotin ku şerê mezhebî zêdetir zirarê dide, ji ber wê divê rêveberiyek ku ji hemû kesan pêk tê bê avakirin.
Derbarê koçberên hatine herêma Kurdistanê de jî hat gotin ku, di serî de NY û saziyên navneteweyî alîkarî bikin. Di daxuyaniyê de biryarên li hember terorîzmê tekoşîn, helwesta hevpar û cihê pêşmerge ketiyê de mayînde bibe hat sitandin.

**PKK: Em bi hev re biparêzin**

Di vê navberê de rêveberê PKK'ê Murat Karayılan di daxuyaniyekê de bang li Barzanî kir û xwest ku bi hev re Kurdistanê biparêzin. Karayilan wiha domkir, “Divê em bi hev re bi teybetî li hember erîşên li Şengal û Kerkûkê bisekinin. Ger ku tekoşîna YPG'ê nebûya niha li Bakûrê Sûriye û li Iraqê dewletek DAIŞ'ê dê bihata damezrandin. Di vê qonaxa dîrokî de divê gerîlayên PKK'ê û pêşmerge li hember erîşan parastinek hevpar bikin. Di vê mijarê de em ji bo her hevkarî û piştgiriyê amade ne"

# Şer li ber deriyê Bexda'yê ye

**Şerîrakirina sunneyên Iraqê ku bi pêşengiya DAIŞ'e zivirê şerekî dijwar gihêşt nêzikî Bexda'yê. Malîkî li hember şerê ku niha li Bakuba'yê didome û gihaye deriyên Bexda'yê ji Emerîqa'yê piştgiriya hêzên hewayî xwest. Di vê navberê de li hember DAIŞ'ê yekîneyên ku ji mîlîsên şiî pêk tê hatin damezrandin û li gor agahiyên ku ji herêmê tên, Pêşmerge bi çekdarên DAIŞ'ê ku dixwezin Tûzxûrmatû'yê bidestxin ve di nava pêvçûnan de ye.**

Li gor nûçeyên ku jî herêmê tên DAIŞ û mitefîkên xwe yên sunne ku hefteyê borî duyem bajarê mezin ê Iraqê Mûsil dagirkir di nava hewildana ku bajarên wek Diyala û Selahaddîn jî bidestxin de ne û di navbera wan û artêşa Iraqê de pêvçûnên cûrbecûr derdikevin. Artêşa Iraqê di nava têkoşîna bi DAIŞ û piştgirên wê re de ye ku piştî dagirkirina Mûsilê berê xwe da Bexda'yê û niha zorê lê dike ku Diyala, Selahaddîn û gelek navçeyên dinj î bi destxe. Wekî din artêşa Iraqê ji bo ku rê li meşa DAIŞ'ê ya berv Bexda'yê bigire car car êrîşên hewayî pêk tîne. Ji bajarê rojavayê welêt Ramadî'yê ku DAIŞ li wir bi hêz e jî nûçeyên pêvçûnan têne. Pêvçûnên di navbera Artêşa Iraqê û DAIŞ'ê de bi piranî li bajarê Bakûba 60 kîlometre nêzikî Bexda'yê ye didomin. Tê gotin ku heke Bakûba bikeve destê DAIŞ'ê wê derî ji bo êrîşkirina Bexda'yê jî vebe.

**Xezîneya petrolê di destê DAIŞ'ê de ye**



Piştî pêvçûnan bajarê Beycî ku li ser riya Bexda û Mûsilê ye û cîhwarê rafîneriya herî mezin a Iraqê ye ket destê çekdarên DAIŞ'ê. Hat ragihandin ku li devera rafîneriyê şewatên mezin derdikevin û li gor agahiyên ku xebatkarên rafîneriyê û berpirsên ewlehiyê didin, li cihên rafîneriyê yên cûda ku li Beycî ya 210 kîlometre li bakurê Bexda'yê ye mij û dûmanê şewatê radibe. Tê zanîn ku petrola ku ji çar aliê welat ji bo afirandina elektrîk û benzînê tê bi kar anîn li rafîneriya Beycî'yê tê hilberîn û herwiha rûnê xwarinê jî li vir tê tenîkirin.

**Ji Malîkî banga yekitiya neteweyî!**

Di vê navberê de Serokwezîrê Iraqê Nûrî El Malîkî ku ket tengasiyek kûr, roja pêncşemê bi riya televizyonan bang li misilmanên sunne û serokên kurd kir û daxwaza yekitiya neteweyî kir. Malîkî di daxuyaniya xwe de ragihand ku gelek fermandar ji pêywirê hatine qewirandin û dê rastiyên di derbarê Mûsilê de jî wê bêne eşkerekirin.
Herwiha Malîkî di nava artêşa li hember êrîşên DAIŞ'ê têk çû de jî dest bi paqijiyekê kir. Di daxuyaniya ku ji serokwezîriyê hat ragihandin de hate gotin ku, Ji ber berpirsiyariyên xwe yên neteweyî bi cih neanîne General Mehdî Garayî, cîgirê wê Abdurrahman Hanzal û Albay Hasan Abdûrrezzak ji pêywirê hatine girtin û hersê fermandar şandine dadgeha leşkerî. Û din ava fermandarên ku ji wezîfeyê hatine girtin, yên ku li Mûsilê li dijî DAIŞ'ê têk çûne jî hene. Malîkî ku heya niha Wezîrtiya Parastinê jî dikir, Serokê Rêxistina Şiî Bedîr Hadî el-Amîrî wek Wezîrê Parastinê pêywirdar kir. Li gor qanûnên Iraqê, heke ku serokwezîr bimirê dê wezîrê parastinê wek wekîlê serokwezîr wê berpirsyariya rêvebiriyê hilde ser xwe.
Li gor çavkaniyên ku BasNûçe gihiştê, Amîrî ji Nûrî el Malîkî ku fermandariya giştî ya artêşê jî di dest de ye xwastiye ku hemû fermandarên ji 8 sal berê vir




ve wezîfedar in ji pêywirê bi dûrxe.

**Li Tûzxûrmatû'yê şerê Pêşmerge û DAIŞ'ê**

Gelê ku li nehiye ya Tûzxûrmatû niştecî ye piştî gefên DAIŞ'ê malen xwe li cih hiştin û xwe spartin Kerkûkê. Piştî ku gel goçkir, Tûzxûrmatû ya bi 15 hezar nifûs, zivirî xirbeyekê. Li bajîr kurd, tirkmen û ereb bi hev re dijîn. Piştî ku DAIŞ'ê gundê Beşîr ku 5 kîlometre nêzî nehiyeyê ye bidestxist, bi hezaran kesî çare ji revê dît û malen xwe valakirin. Şêniyê Tûzxûrmatû ku tirkmenên şiî jî di navde ne, xwe spartin Kerkûk ku ket bin kontrola Pêşmergeyan. 15 kîlometre li başûrê Kerkûkê hêzên Pêşmerge û yên ewlehiyê ji bo talûkeya êrîşkirina DAIŞ'ê amade ne. Te ragihandin ku ciwanên tirkmenan jî bi dildarî beşdarî Pêşmergeyan dibin.

**Li dij DAIŞ'ê 3 milyon mîlîsên şiî**

Tê gotin ku piştî daxuyaniyên DAIŞ'ê di derbarê amadekariya êrîşkirina Bexda'yê li bajêr panik û ragêşiyek niştecî ye. Dîsa li gor agahiyên ji herêmê tên artêş li derveyî bajêr çalên kûr vedide, şiî yên ku li Sadr City'ê dijîn rahêştine çekan, li bajarên derdorê û ji Îranê gelek çekdarên şiî jî ji bo parastina Bexda'yê û şerkirina bi DAIŞ'ê re hatin bajêr. Di vê navberê de gelê Bexdayê piştî gefên DAIŞ'ê av û xwarinê stok dike û panîkek mezin li bajêr asê ye. Rojnamevanên li herêmê jî gahiyên ku herêmên şiî bê navber têne bombebarankirin û dorpêçiya bajêr dişînin.

Piştî biryara DAIŞ'ê ya ber bi Bexda'yê şiî jî ketin nav hewldana damezrandina mîlîsên bi dildarî û çek rahêştin. Otorîteyên herî mezin ên olî yên Iraqê Ayetûllah Alî Sîstanî, Ammar EL Hekîm û Mûkteda Sadr jî ji bo ku şiî ji bo şer amadebin û rahêlin çekan fetvayan diweşînin. Li gor televizyonên Iraqê hejmara mîlîsîn bi dildarî gihêşt 3 milyona û komek bi navê Aşura ku ji 50 hezar kesî pêk tê jî amade ye.
Li gor nûçeya Televizyona Sûmeriye, piştî Konseya Bilind a Islam ya Iraqê hemû welatiyên ku destê wan çek digirê vexwend berxwedana li hember DAIŞ'ê, artêşek dildarî ku ji 50 hezar kesî pêk tê hat damezrandin. Konseya Bilind a Islam ya Iraqê ku serokê wê Ammar el-Hekîm ragihand ku Yekîneyên Aşûra li 15 bajaran bûroyên qebûlkirina dildarên ku li dij DAIŞ'ê şer bikin vekirine. Di vê navberê de piştî ku dewletên wek Emerîqa û Tirkiye qonsolxaneyên xwe valakirin, gelek dewletên din jî ketin nava heman hewldanê û DAIŞ'ê bazara berdana; serokkonsolosê Mûsilê jî di nav de 48 berpirsiyar û sîvîlên rehin ya bi Tirkiyê ret kirine. Tê gotin ku DAIŞ rehîne biriye Suriye.

**Malîkî ji Obama "piştgiriya hewayî" xwest**

Serokê serekantiya giştî ya DYA'ê Martin Dempsey got ku Iraq ji DYA'ê xwastiye ku li hember DAIŞ'ê erîşên esmanî pêk bînin. Dempsey di rûniştina qongrê ya di derbarê bûtçeya 2015'an ya Pantegonê de got ku: "Me ji Hukumeta Iraqê bo hêzên esmanî daxwazî girt." Dempsey derbarê dema xwastekê de tu agahî neda.
Derbarê pirsa ku rêveberiya Obama ji bo vê xwastekê çi bike de Dempsey nirxandina: "Em li ku bin, bi DAIŞ'ê re tekoşîn li gor berjewendiyên DYA'ê ye." kir.
Wezîrê Karê Derve yê Iraqê Hoşyar Zebari di televîzyona El Arabiya de got me ji DYA'ê xwestiye ku li hember DAİŞ'ê erîşên esmanî bike. Ji hêla din, bo ku mîlîtanên DAİŞ'ê bêne sikinandin û piştî çalakiyên DAİŞ'ê li Iraqê Serokwezîrê Iraqê Nuri el-Maliki ji DYA'ê xwest ku bi dizî li hember DAİŞ'ê bi wesayîtên esmanî yê bê mirov erîş bê kirin. Ev di medyaya DYA'ê de hatibû nivisîn. Rêveberiya Obama derbarê mijarê de bersivên "hemû vebijark li ser masê ye" da. Lê rêveberî derbarê xwasteka Iraqê de tişt neda zanîn.

# Roza Şêx Seîd Efendî

ÎHSAN TEKTAŞ

Dewletî goreyê zerrîya xo xo rê tarîx nusenê. Rast yan zî çewt xem nêkeno, çîyo ke pê keyfweş benê ey nusenê. Wexto ke meseleyî qewimîyenê her tim serdestî benê heqdar. La bindestî sey xayîn, terorîst, anarşîst ûsn. yenê naskerdiş. Dewletê kolonyalîstî winî xo rê tarîx nusenê. Şarê kurdî zî nê tarîxê lîşinî ra nesîbê xo girewto û zaf şêx û melayî, zana û alimê kurdan mîyanê tarîxê lîminî de vindî bîyê û hetê kurdan ra rind nêameyê şinasnayîş. Nê merdimanê ma yê ercîyayan ra yew Şex Seîd Efendî yo.

Şêx Seîd Efendî serra 1865 de dewa Xinisî Qolhîsar de ameyo dinya. Nameyê kalikê Şêx Seîd Efendi Şêx Elî Septî yo. Şêx Seîd Efendî lacê Şêx Mehmud Feyzî û Gulê Xanime yo. Kalikê Şêx Seîdî Şêx Elî Septî Efendi eslê xo dewa Bismilî Çilsitun ra ya. Şêx Elî Septî Çilsitun ra koç kerdo, dewa Paliyî Kelxasî. Kelxasî de zaf suxteyî weriznayê û dînê îslamî ser o xizmet dayo şarî. Babîyê Şêx Seîd Efendî Şêx Mehmud Feyzî seba gureyê îrşadî Pali ra koç keno dewa şino Qolhîsarê Xinisî.

Hewt lacê Şêx Mehmud Feyzî ameyê dinya û pîlê lacanê ey Şêx Seîd Efendî yo. Şêx Seîd Efendî medresanê Pali, Xarpêt, Amed û Mûşî de perwerde dîyo û mergê babîyê xo ra pey, ey cayê babîyê xo girewto û bîyo serekê terîqeta naqşîbendî.

Şêx Seîd Efendî di rey zewecîyayo. Namêyê cenîya ey a pîle Amîna Xanim a. Wexto ke Şêx Seîd Efendî herbê Rûsî ver, bi kom û kulfetê xo Xinis ra koç keno şino Pîran, Amîna Xanime nêweş kewena û mirena. Zewacê diyin waya Xalid Begê Cîbrî Fatma Xanime reyde kerdo. Panc lac û panc kênayî, pêro yewedes tutê Şêx Seîd Efendî ameyê dinya. Nameyê lacanê ey Şêx Elî Rîza (1894-1970), Şêx Xîyasedîn (1905-1972), Şêx Selhedîn (1907-1979), Şêx Evdilxaliq (1922-1944) û Şêx Ehmed (1923-?) ê.

Nêzdo ke dewleta Osmanî vila bîyêne rêxistina Îttîhad Teraqî dest bi awankerdişê dewletêka netewî ya tirke kerd. Temamê xebata nê hereketî nameyê tirkan ser o bî. La seba ke tirkî dewleta xo rehet ronê nê nîyetê xo aşkera nêkerd. M. Kemalî bi xo demê ronayîşî de çekuya "tirk" nêşuxulna. Ge zerrîya kurdan weş kerde (10 sibate 1922, pêşnumayê qanûnê xoserî), ge zî şêx û melayan de werişt û runişt. Çimkî zanayne ke bê kurdan, bê hêzê şêx û melayan nêeşkeno dewlete rono. Peymana Lozanî ra pey rîyê înan o rast vejîya meydan! Tirkîya tenê bîye yê tirkan, temamê neteweyê bînî çinî hesebîyayî. 1924 de medresayî gêrîyayî, xîlafet wedarîya, xalîfeyo peyin Evdilmecîtî bi keyeyê xo ra welat terk kerd. Quran qedexe bi. Cil û bergî bedelîyayî û kulturo xerîb yê xerbî qebul bi.

Kesî çîyê winasî nêpawitêne. Şêx Seîd Efendî hemberê na dirîyîye de bêveng nêmend. Şêx û alimê kurdan rê mektubî nuştî û înan ra hetkarî waşte. Fikrê Şêx Seîd Efendî de çîyo ke kurdan û tirkan pê ra girêdayne tena dîn bi. Hukmatê tirkan dîn zî wedartibi, nika ra pey çîyo ke înan pê ra girêbido nêmendbi.

**Nêzdo ke Dewleta Osmanî vila bîyêne rêxistina Îttîhad Teraqî dest bi awankerdişê dewletêka netewî ya tirke kerd. Temamê xebata nê hereketî nameyê tirkan ser o bî. La seba ke tirkî dewleta xo rehet ronê nê nîyetê xo aşkera nêkerd. M. Kemalî bi xo demê ronayîşî de çekuya "tirk" nêşuxulna.**



Şêx Seîd Efendî wexto ke xo hedre keno û keye ra vejêno cenîya ey Fatma Xanime ci ra persena, vana: "Ti ma kamî rê verdenê û şinê?" Cewabê Şêx Seîd Efendî winî bîyo: "Eke ez û gopala xo tenê bimanê zî reyna ez dije nê kafiran de vejêna. Ne ez Hz. Huseynî ra ercîyaye ya ne zî keyeyê mi keyeyê ey ra ercîyaye yo. Eke ez vernîya nê kafiran nêgêrî, go zebanî şaşika mi tepişê û mi kaş bikerê ver bi cehenem. Şima go o wext bieşkê hetkarî bidê mi? Go mi ra nêvajê, ey Seîd Homayî henda mal û milk da to, seba Homayî to se kerd? Înan emrê Homayî kerdî binê lingan. Belê ez dest bi cîhadî kena, ê ke bitersê nêeşkenê cîhad bikerî." Û kewt rayîr.

13 sibate 1925 de Şêx Seîd Efendî û nêzdê hîrê sey eskerê xo Pîran de şinê keyeyê Şêx Evdirehîmi. Hukmatê Tirkîya seba ke panc qaçaxê ke mîyanê eskeranê Şêx Seîdî de yê tepişo yew tîmê eskerî erşawita keyeyê Şêx Evdirehîmî. Şêx Seîd ê panc eskeran teslîm nêkeno û dest erzênê tifingan. Tîmê eskerê tirkan ra yew esker mireno û çend eskerî zî bîrindar benê. Serewedartişê Şêx Seîdî bi no hawa, şewanê sibate ê serdinan de bê plan û bê program dest pêkerd. Seke yew tuteko bêwext bêro dinya. La wext wextê vindertişî nêbi. Şêx Seîd Dara Hênî (Genc) ser rayîr kewt. 16 sibate 1925 de Dara Hênî kewt destê eskeranê Şêx Seîdî û sey payîtextî nîşan bi. Feqî Hesen sey serekê payîtextî weçînîya. Şêx Seîd Efendî her cebhe de şêx û melayî sey fermandar nîşan kerdî. Fermandarê cebheyê Çepaxçurî (Bîngol) Şêx Şerîf, ê Mûşî Şêx Evdilayê Melekan, ê Madenî Şêx Evdirehîm, ê Sêwregi zî Şêx Eyub tayîn bîyî. Fermandarîya cebheyê Amedî zî Şêx Seîd Efendî girewt milê xo.

Serewedartiş zaf lez welat ra vila bi. Xarpêt, Erxenî û Sêwregi kewtî destê eskerê Şêxî. La çiqas bajarî kewtêne destê înan, barê înan hende giran bîyêne. Çimkî çeteyî mîyanê şar û şaristanan ra xalî nêbîbî û nîfaq vistêne mîyanê şarî. Xo ra demêko kilm de Dara Hênî û Xarpêt de talan û yaxmeyî dest pêkerd. Talan ra

**28 Hezîrane 1925 de mehkemeya îstîqlalî qerarê xo aşkera kerdî. Bi Şêx Seîd Efendî ra çewres û hewt kesî cezaya îdamî girewte. Hucre de qerar teblîxê serewedartoxan bi. Şêx Seîd Efendî seba nimajî destur waşt û nimajê xo kerd. Nimaj ra pey yew rojnamegêrî Şêx Seîdî ra hîsê ey pers kerdî. Cewabê Şêxî "Seba ke ez îdam bena wa pîzeyê şima bi mi nêveşo, îdamê mi seba Homayî û dînî yo" bîyo.**




Nûçeya sêdarekirina Şex Seid / Rojnameya Vakit

pey nê bajaran de şarî xo eskerê şêxî ra dûrî da.
16 sibate 1925 de hukmatê Anqara bi serewedartişê Şêx Seîd Efendî hesîya. Herbî Anqara de veng da. Serekwezîr Fethî Okyar bi û Îsmet Înonuyî qîmê xo bi polîtîkaya Fethî Begî nêardêne, zaf nerm dîyêne. 4 adare 1925 de Îsmet paşa bi serekwezîr û gure kerd xo dest. Karê eyo verên vetişê qanûnê Takrîrî Sukûn bi. No qanûn qerarê qirkerdişê kurdan bi. Îsmet Paşayî bi lez û bez mehkemeya îstîqlalî awan kerde. Reysê mehkema Mazhar Mufît Kansu, serdozger Ehmed Surreya Orgeevren, endamî zî Elî Saîb Ursavaş û Litfî Mufît Ozdeş tayîn kerdî. Bê serdozgerî ê bînan perwedeyê huqûqî nêdîbi. û huqûq ra fam nêkerdêne. Mehkemeya îstîqlalî wexto ke qerarê dardekerdişî bidayêne bê temyîz û bê destûrê meclisî qerarê xo ardêne ca û înfaz kerdêne. Bi qanûn no heq dîyabi na mehkeme. Hukmatê Tirkîya temamê îmkanê tewlete seba berjewendîya xo bikar ardî. Rayîrê trene ke sînorê Tirkîya û Sûrîye ra vêreno hîmayeyê Fransa de bi. Tirkîya seba ke esker û yaqitê teyaran sewqê Amedî bikero Fransa ra destûr girewt û rayîr bikar ard.
26 adare 1925 de eskerê Tirkîya bi teyaran şi eskerê Şêx Seîdî ser. 27 adare 1925 de Şêx Seîd Efendî Amed ra tepîya ageyra û hetê Licê-Hênî ser şi. Dewleta Tirkîya tarîxê xo de reya verêne teyareyî kurdan ser o şuxulnayî. Êdî kurdî qîyameta qijek ciwîyayne. Di sey ra zafêr dewî ameyî veşnayîş û des hezarî ra zêdeyêr merdimî kişîyayî.
15 nîsane 1925 de Şêx Seîd Efendî serê pirdê Evdirehman Paşayî de bi bêbextîya bacenaxê xo Qasimî ame tepîştiş. Qasimî na bêbextîye verê cû bi vistewreyê xo Xalid Begê Cibrî zî kerdbi û o dabi tepiştiş. (Qasim, waya Xalid Begî Gulê Xanime reyde zewecîyaye bi). Qasim bîyo sey Qarunî û bêbextîye bi qewmê xo kerde.
Eskerê tirkan 26 gulane 1925 de Şêx Seîd û hîris û heşt embazê ey ardî Amed. Heştay û yew kesî nêzdê yew aşme vejîiyayî mehkeme. Heyetê mehkeme destûr nêda ke serewedartoxî xo rê avukat tepişê. Înanê ke tirkî nêzanayne bi kurdkî û erebkî xo pawitêne. La wexto ke tercuman çin bîyêne nêeşkayne xo bipawê û qeraro ke seba înan bidîyayne qîmê xo pê ardêne. Seke endamê yedek Ewnî Begî vato, yew xortî, seba ke tirkî nêzanayo xo nêpawito û cezaya îdamî girewta.
28 hezîrane 1925 de mehkemeya îstîqlalî qerarê xo aşkera kerdî. Bi Şêx Seîd Efendî ra çewres û hewt kesî cezaya îdamî girewte. Hucre de qerar teblîxê serewedartoxan bi. Şêx Seîd Efendî seba nimajî destur waşt û nimajê xo kerd. Nimaj ra pey yew rojnamegêrî Şêx Seîdî ra hîsê ey pers kerdî. Cewabê Şêxî "Seba ke ez îdam bena wa pîzeyê şima bi mi nêveşo, îdamê mi seba Homayî û dînî yo" bîyo.
29 hezîrane 1925 de mehkemeya îstîqlalî qerarê xo înfaz kerdî. Vernîya hemîne de Feqî Hesen îdam bi, ey ra dima rêze dewam kerde. Çewres û hewt şêx û melayê kurdan verê çimê şarê xo de bi bêbextî, bi nijadperestî, bi kolonyalîstî ameyî dardekerdene.
No qîyam ra dima vateyê peyên yê Şêx Seîd Efendî ke resayê ma winî yê: "Na dinya de az ameya peynîya cuya xo. Seba ke ez şarê xo rê bîya qurban poşman nîya. Muheqeq ke rayîrê mi, rayîrê dînî yo. Wa tornê ma vera dişmenî de ma nêdê şerme, bes o."
Goreyê vatişan ra gorê Şêx Seîd Efendî û embazanê ey Amed de semtê Berê Koyî de yo. La heta nika derheqê cayê gora ey de yew beyanatê resmî nêdîyayo. Ma nê halî ra fam kenê ke dewleta Tirkîya qaso ke ganeyanê kurdan ra tersena hende zî merdeyanê înan ra tersena. Coka cayê gora merdeyanê kurdan, kurdan ra nimnena.
Heştay-neway serrî verî herbê kurdan marjînal mend. Sunîyan halê elewîyan fam nêkerdêne. Şarê mintiqaya Botanî herbê Şêx Seîd Efendîyî de bêveng mend. Şerê Agirî de Îhsan Nûrî Paşa rûnê xo de qijilîya. La nika se ra se nêbo zî mîyanê kurdan de tifaqêko ercîyaye virazîyayo. Yewbînan fam kenê, yewbînan dima şinê û dejê yewbînan rê benê derman. Ez bawer kena ke nika Şêx Seîd Efendî mezelê xo de zerrweş û rehet o. Çimkî tornanê Şêx Seîdî heta nika o nêdayo şerme û go nika ra pey zî nêdê. Homa Şêx Seîd Efendî û heme embazanê ey bi rehma xo şa biko.



Şêx Seîd di zindana Amedê de

# Ne mafê Emerîka ye ku li dijî firotina petrola kurdan derkeve

CESÎM ÎLHAN

Piştî ku Serokwezîrê Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî ku got me bi Tirkiyê re bo hinartina petrolê peymana 50 sal îmze kir û dibe ku em vêya dirêj jî bikin, ligel Iraqiyan dîplomatên Emerîqî jî bertek nîşan da. Wezîrê petrolê yê Iraq'ê Abdulkerim Luaîbî di daxwiyaniya xwe de got ku peyama petrolê ya di navbera herêma Kurdistanê û Tirkiyê de "xeletiyek mezin e." Rojnamevan Oral Çalışlar got "Petrola Kurdistanê ya kurda ye." Serokê berê yê qomîsyona petrolê ya AKP'ê Mücahid Fındıklı got ku peyam li gor rêbazên navnetewî ye.

**Mücahid Fındıklı: Peymana petrolê li gor rêbazên navnetewî ye**

Serokê berê yê qomîsyona petrolê ya AKP'ê Mücahid Fındıklı got ku peyama di navbera rêveberiya herêmê Kurdistanê û Tirkiyê de li gor rêbazên navnetewî ye, di heman demê de li gor qanûna Iraqê jî ye. Fındıklı axaftina xwe waha berdewam kir: "Komara Tirkiyê qanûna Iraqê nas kiriye. Peyamên li gel Kurdistanê jî li gor vê qanûnê tê îmzekirin. Tu hewlê me yê ku em vê qanûnê bin pê bikin tune ye. Turkiye hewl dide ku bibe navendek hilberîna petrolê û navendek firotina petrolê. Enerjî him ji bo hilberînê him jî ji bo firotanê qadek baş e. Fındıklı dest nîşan kir ku petrol ya gelê Iraqê ye û waha dirêjî da axaftina xwe:" Petrol çi qasî tê firotin, difroşin kê Iraq biryar digere. Ji ber wê kê ji vê karê rehetsize em nizanin. Em pêşiya Iraqê vedikin ku bi rehetî petrola xwe bifroşin. Bê wî pirsgirêkên di navbera hukumeta navendî û herêmê Kurdistanê de girêdayê polîtîkayê wan e. Tiştê me girê dide qanûna Iraqê ye. Pirsgirêka petrola Kurdistanê li ser Tirkiyê de bê firotin tune. Bûyera xeta petrolê ne mijarek îro ye. Iraq petrola xwe bi xwe difroşe, Tirkiye nafroşe. Petrola Kurdistanê ya ji Besrayê derkeve yan jî ji Ceyhanê derkeve.

**Gengeşiya hin kesan ya siyasî li dervayê mijara me ye**

Fındıklı dest nîşan kir ku petrol ya gelê Iraqê ye û waha dirêjî da axaftina xwe:" Petrol çi qasî tê firotin, difroşin kê Iraq biryar digere. Ji ber wê kê ji vê karê rehetsize em nizanin. Em pêşiya Iraqê vedikin ku bi rehetî petrola xwe bifroşin. Bê wî pirsgirêkên di navbera hukumeta navendî û herêmê Kurdistanê de girêdayê polîtîkayê wan e. Tiştê me girê dide qanûna Iraqê ye. Pirsgirêka petrola Kurdistanê li ser Tirkiyê de bê firotin tune. Bûyera xeta petrolê ne mijarek îro ye. Iraq petrola xwe bi xwe difroşe, Tirkiye nafroşe. Petrola Kurdistanê ya ji Besrayê derkeve yan jî ji Ceyhanê derkeve. Ji ber wê gengeşiya wan ya siyasî me girê nade."

Fındıklı got ku em dixwazin sînorên tîcaretê rabe û wiha berdewam kir: "Em dixwazin vîze jî rabin. Em dixwazin bi Kurdistanê re pêwendiyên xwe pêşxin. Nasînek me ya dîrokî bi Kurdistanê re heye. Ev dan û sitandin ji bo herdû aliyan wê baş bibe.

**Edîtorê Govara Birikimê Ömer Laçiner: Divê kurd rolek bi hevre bilîzin**

Laçiner got ku mijara petrolê bûyerek berê ye û bi hatina Barzanî li Diyarbekirê derketiye holê ku kê mafê gotinê ye. Laçiner: Divê Tirkiye petrola Kurdistanê li gor peyamên navnetewî bifroşe û ev herkesê girê dide. Bo serxwebûne pere hewce ye û bo Kurdistanê petrol girîng e. Ev nêzîkê de sale kurd hûkimran in lê nû petrol tê hilberîn. Petrolê rizî dikin. Perê petrolê jî xerc dikin. Bifikirin li cihek bîna Mezopotamyayê çandinî nakin. Qedera kurda di vir de ye. Divê têgihek ku hemû kurd çawa fikin derkeve holê ne tenê perçeyek. Divê bi hev re bifikirin.



**Nivîskarê rojnameya Radikalê Oral Çalışlar: Petrola li Kurdistanê ya kurda ye**

Hevkariya tirk û kurdan ya di derabarê petrolê de pêşketineke erênî û bi xêr e. EmerîKa dixwaze ku petrolê di bin kontrola xwe de bigire. Iraq jî heman tiştî dixwaze. Kurd niha dixwazin ku serxwbûnê pêk bînin û ji bo vê jî divê budçeya xwe biafirînin. Helbet petrola li herêma Kurdistanê mafê kurdan e. Ez di wê baweriyê de me ku Barzanî nêzikahiyeke hişk nîşan dide. Divê êdî qîmeta ku heq dikin li heremê bidin kurdan. Ji bo silametiya heremê divê dewletên heremê bi kurdan re têkiliyeke nû û dostane pêk bînin.

**Aborîzan Süleyman Yaşar: Mafê EmerîKayê li ser petrola kurda tune**

Yaşar got ku Iraq perê Kurdistanê nedaye û ev Kurdistanê mafdar derdixe ku petrola xwe bifroşe. Yaşar destnîşan kir ku: "Ji ber ku EmerîKa operasyona Iraqê kiriye xwe mafdar dibîne lê ji ber ku kurd nikarin perê xwe bistînin mafê wan yê firotina petrolê heye. Kes nikare pêşiya firotê bigre, ji xwe petrol bi rê jî ketiye. Bo tu bikaribî bibî dewletek serbixwe divê bûtçeyek te hebe. Li Kurdistanê sanayî zêde pêş neketî ji ber wê qaz û petrol tişta herî girîng e. Pêşveçûna DAIŞê zirarê dide Kurdistanê û Tirkiyê jî.

**Pisporê Siyasetê Prof. Dr. Doğu Ergil: Petrola kurda bo Tirkiyê çavkaniyek e**

Ergil got ku pirsgirêka Kurdistanê nebûna bingehek yasayî ye û axaftina xwe waha domand: " Kurdistan nikare mafê xwe bistîne, ku nikaribe mafê xwe bistîne pêdiviyên wan pir dibin. Ji bo wê biryarek waha girt. Tirkiyê piştgiriyê da Kurdistanê. EmerîKa tu car serxwebûna Kurdistanê nexwest. Ji ber ku anha Iraq mûhtacê Kurdistanê ye dixwaze maf ji Iraqê bistîne.

**Siyasetmedar M. Emîn Pencewînî: Emerîka reklam dike**

Pencewînî got ku: Navbera Iraq û EmerîKayê baş e, Iraq bê EmerîKayê tev nagere. Dixwazin Kurdistanê bixin tengasiyê. Ji ber ku nikarin pêşî lê bigire lîstikan derdixen. EmerîKa bi xwe petrolê dikire ji ber wê gotênê wî rastiyê nîşan nade.


Mücahid Fındıklı


Ömer Laçiner


Oral Çalışlar


Doğu Ergil


Süleyman Yaşar

# Li Stenbolê şaxên DAÎŞ'ê



DAÎŞ'a ku bi êrîşa Mûsil û pêkanînên şîddetê di rojeva cîhanê de bi cîh bûye, bi piştgiriya gelek saziyên le dewletên Rojhilata Navîn û hwd bi piştgiriya gelek saziyên li van deveran bi hêztir dibe. Li Tirkiye jî gelek sazî û derdorên ku piştgiriya bi her avayî û komkirina çekdaran li gel DAÎŞ'ê dikin hene. Li cihe ku meriv bibêje li Gungoren a Stenbolê şaxên DAÎŞ'ê hene.

Li gor îstatîstîk û agahiyên di derbarê DAÎŞ'ê de tê zanîn ku ji Tirkiye zêdetirî 3 hezar kes beşdarî DAÎŞ'ê bûye. Bi taybetî li bajarên Kurdistanê bi riya sazî û komeleyên li heremê çekdar têne komkirin û piştgiriya bi her alî ve ji bo DAÎŞ'ê tê berhevkirin.

Li Stenbolê jî li gelek cihan saziyên ku bi daliqandina ala DAÎŞ'ê balê dikêşin û piştgiriyê berhev dikin hene.

Saziyên derdorên oldar ku bi sedemên cûda cûda hatine avakirin, bi nêzikahiyeke hevpar alîkariya însanî berhev dikin bo DAÎŞ'ê û ciwan li van deran tên îknakirin û ji bo bibin çekdar têne şandin. Bi taybetî jî li tax û deverên ku zêdetir xizan lê dijîn, bêyî kontrola dewletê ev sazî û rêxistin bi qasî daxwaza xwe xebat dimeşînin bo DAÎŞ'ê.




Yek ji van saziyan, Komeleya Haznedar ya Lêkolîn, Alîkarî û Jiyandin a Îslamî'ye (HİSARDER) ku li şaxa wê ya li Gungorenê levhaya DAÎŞ'ê bi avahiya xwe de daliqandiye û li ser navê 'Bo Sûriye Piştgirî û Têkoşîna bi Tiryakê re' kampanyeyan dide destpêkirin û bi riya kampanyayê ji DAÎŞ'ê re çekdaran berhev dike. Bi avayekî vekirî tabelaya DAÎŞ'ê bi şibaka şaxê ve daliqandî ye.

Li gor nûçeya ku di rojnameyek tirkan de hate weşandin de ev komele ciwanên ku temenê wan di navbera 18-25'an de ye, bi taybetî jî yên ku bi malbatên xwe re li hev nakin hildibijêre, dû re hînî tiryakê dike û pişt re jî dişîne nav refên DAÎŞ'ê.

**Beşdarî zêdetir li Kurdistanê ye**

Herwekî din di îstatîstîk û agahiyên di derbarê beşdarbûna DAÎŞ'ê de jî tişta balkêş ev e ku zêdetir li bajarên Kudistanê ciwan diçin şerê DAÎŞ'ê. Li gor vê li Tirkiye bajarên ku beşdariya ciwanan a DAÎŞê zêdetir e wiha ye: Semsûr (Adiyaman) Bîngol, Mêrdîn, Amed, Kirşehir, Konya, Enqere, Stenbol.

Tê zanîn ku li bajarên Kurdistanê bi riya dersxane, komele, saziyên civakî û mizgeftên di desten cemaatan de çekdar ji bo DAÎŞ'ê têne komkirin.

# Pedal li dijî HES'an digerin




Li Amedê komekê xweza hez, li hemberî çêkirina HES û bendavan yên li ser Çemê Dicleyê, bi dirûşma "HES êdî bes" gera bîsîkletê li dar xist.

Endamên Tevgera Ekolojî ya Mezopotamya û Kuluba Sporên Xweza û Bîsîkletê li hemberî çêkirina HES û bendavan yên li ser Çemê Dicleyê tên çêkirin, bi dirûşma "HES êdî bes" gera bîsîkletê li dar xist. Di çarçoveya gera ku dê du rojan dewam bike de, dê li ser zirarên HES'an yên li hemberî xwezayê nîqaş bên kirin. Ger wê li 3cihên ku HES lê tên çêkirin, derbas bibe. Gero îro ku ji Gundê Tilhan, destpê kir, wê bi gundên Harbecin, Eser û Aynetû dewam bike. Kom, dê êvar jî li ser Pira Dehderî kon vede û li derdora Pira Dehderî paqijiya derdorê bike. Roja din jî kom wê ji Kabê dest bi gera xwe bike û piştî gundên Çarikli u Yuvacikê dê li gundê Başakli dawî li gera xwe bîne.

# Qanûna nû riya girtiyên nexweş venake!




Cîgirê Serokê Koma HDP'ê Îdris Balûken nerazîbûn nîşanî Pakêta Nû ya Dadgeriyê da ku der heqê girtiyên nexweş de xwedî sererastkirineke têrker nîne û got, "Bi ti awayî bersivê nade pêwistiyan; pêşî li berdan û tedawîkirina girtiyan venake. Bi rêya pênasekirineke bêbinî ya qanûnî re, mîna ku gavan diavêje nîşan didin. Ev yek gelekî şaş e û derveyî exlaqê ye." Balûken destnîşan kir ku ji bo rêveçûna 'pêvajoya çareseriyê' divê girtiyên nexweş tavilê bên berdan.

Pêşnûme Qanûna der heqê guhertina hin qanûnan a ku di nava raya giştî de weke "Pakêta Nû ya Dadgeriyê" tê naskirin, li Civata Giştî ya Meclîsê hat qebûlkirin û bû qanûn.

Di qanûnê de ji bo berdana girtiyên nexweş guhertineke têrker nehat kirin. Ji bo berdanê, li pênasekirina "xeteriya ji aliyê ewlekariya civakê" bi tenê krîtera "xeteriyeke berçav û giran" hat zêdekirin. Cîgirê Serokê Koma HDP'ê Îdrîs Balûken di daxuyaniya xwe wiha got; "Guhertina mijara gotinê bersivê nade ti pêwistiyan; pêşî li berdan û tedawîkirina girtiyên nexweş venake."

Balûken da xuyakirin ku ji bo vê guhertinê pêwistî bi qanûnê nîne û bendewariyên xwe bi vî rengî anî ziman: "Ji bo girtiyên nexweşên giran -hejmara van derdora 252 ye- ji bo girtiyên rewşa wan giran dibe û li ber mirinê ne, divê sererastkirinek bê kirin ku tavilê bên berdan û tedawiya wan bê kirin. Pêwîste ji bo raporên nirxandina rewşa hevalên nexweş de, raporên nexweşxaneyên zanîngeh û nexweşxaneyên lêkolîn û perwerdeyê têrker bên dîtin. Yên xwedî nexweşiyên giran ên psîkolojîk jî divê serbest bên berdan. Her wiha di dema biryara girtinê de, jinên ducanî yan nû zarok anibin dunayYê, divê werin berdan."

Balûken da xuyakirin ku wan bi Alîkarê Serokwezîr û hin rayedarên hikûmetê re hevdîtin kirine û rayedaran soz dane wan ku wê pirsgirêka girtiyên nexweş çareser bikin û got, "Niha bi rêya pênasekirineke bêbinî ya qanûnî re hewl didin nîşan bidin ku gavan diavêjin. Ev gelekî şaş e û li derveyî exlaqê ye. Eger 'pêvajoya çareseriyê' wê bimeşe divê der barê hevalên nexweş de gavên pratîkî bên avêtin û tavilê werin berdan. Her difikirin ku ev yek di nava sîstema heyî ya qanûnî de dikare were kirin, divê tavilê vê bikin. Eger hikûmet di wê baweriyê de ye ku mewzûata qanûnî têrê nake, berî Meclîs bê girtin divê tavliê vê sererastkirinê bike. Ev yek hinekî bi zîhniyetê re eleqedar e. Eger hin nuqteyên li ber xwe dide werin şikandin, temamî dikarin bên berdan."

Balûken destnîşan kir ku pirsgirêka girtiyên nexweş ne tenê bi 'pêvajoya çareseriyê' re eleqedar e, di heman demê de ji aliyê însanî, wicdanî û exlaqî ve jî girîng e.

# Amnesty: Zeynebê derman bikin

Rêxistina Efûya Navneteweyî (Amnesty International) di daxuyaniyekê de ragihand ku pêwîste demek berî demekê çareseriya pijîjkî ji bo girtiya siyasî ya kurd Zeyneb Celaliyan li derveyî girtîgehê bê kirin. Ev demek dirêje Celaliyan ji ber nexweşiya çav dinalêne.

Malpera fermî ya Amnesty di raporeke xwe de bal kişand ser wê yekê ku rewşa tendirûstiya girtiya siyasî ya kurd Zeyneb Celaliyan roj bi roj ber bi xirabûnê ve diçe û egera wê yekê heye ji ber nexweşiyê çavên xwe winda bike.

Amnesty di daxuyaniya xwe de wiha dibêje: "Zeyneb Celaliyan dest û pê girêdayî ji bo nexweşxaneya nava girtîgehê hatiye veguhestin. Ji ber nebûna derfetên pijîjkî, li girtîgehê ti çareseriyek jêre nehatiye kirin. Heta berpirsên girtîgehê destûrê nadin ku ew girtiya siyasî li derveyî girtîgehê were tedawîkirin û ji aliyê pijîjkekî taybet ê çav ve neştergeriya pêwîst jêre were kirin."




**Zeyneb hatiye îşkencekirin**

Di berdewama rapora Rêxistina Efûya Navneteweyî de wiha tê gotin: "Zeynet Celaliyan di hucreyên yek kesî yên rêveberiya îtliata rejîma Îranê de hatiye îşkencekirin. Piştre ji aliyê dadgeha înqilabî ve cezayê darvekirinê lê hatiye birîn. Ji mijdara 2011'an ve cezayê wê ji bo girtîgeha hetahetayî (muebet) hatiye kêm kirin û niha jî destûr nayê dayîn ku malbata wê hevdîtinê ligel wê bikin."

Rêxistina Efûya Navneteweyî di dawiya daxuyaniya xwe de wiha dibêje: "Pêwîst e rejîma Îranê li gor pîvan û xalên mafê mirovan ên Neteweyên Yekbûyî (NY) ligel Zeyneb Celaliyan tevbigere. Divê rejîma Komara Îslamî ya Îranê dest ji zextên li ser Celaliyan berde û di demekî herî kurt de girtiya siyasî li nexweşxaneyên derveyî girtîgehê û bi awayekî herî baş çareseriya pijîjkî jêre bike."

# Civan li eniya şer in



Piştî ku DAÎŞ'ê berê xwe da Iraqê di serî de bajarê Musilê û çend bajar û bajarokê din jî dagir kir bû cîranê Kurdistanê. Ji ber têkçûn û belavbûna artêşa Iraqê, hêzên fermî yên herêma Kurdistanê hemû xaka Kurdistanê ku "bi nîqaş" tê bi navkirin xist destê xwe. Li hin cihan di nav Pêşmerge û DAÎŞ'ê de pevçûn derket. Bi van bûyeran re hêzên YPG'ê û KCK'ê daxwiyaniyek dan û gotin ku: "Em amadene bi hêzên pêşmerge re xaka Kurdistanê biparêzin." û di navbera sînorê Rojava û herêmê Kurdistanê de eniyek hevbeş hat avakirin û çend operasyonên hevpar hatin lidarxistin.

Bi van pêşveçûnan re li bakûrê Kurdistanê Tevgera Civanên Kurdistanê qampanya ya ji pêşmergeyan re pişgirî da destpêkirin û bi dehan kes derbasê başûr eniya şer bûn. Endemê Tevgerê Roger Çaxer derbarê çûna xwe ya eniya şer de got ku: " Em ji bo di parastina axa Kurdistanê li hember êrişên DAÎŞê li gel pêşmergeyan şer bikin derbasî başûrê Kurdistanê bûn. Di vê çarçoveyê de em çûn herêmên Tilkêf û Zimarê. Me li wan deran bi pêşmergeyan re hevdîtin kir. Li Tilkêfê me bi du generalên artêşa Kurdistanê re hevdîtinek kir. Me armanca hatina xwe ji wan re eşkere kir û me navên xwe qeyd kir bo hewcedariyek çêbibe em tevlî hêzên pêşmergeyan bibin. Navên generalan yek Emîn Geverkî û yek jî Sefer Amedî bû. Wan li hember vê helwesta me kêfxweşî û serbilindiya xwe anîn ziman."

Çaxer derbarê dîtinên xwe yê eniya şer de jî got ku: " Artêşa Kurdistanê niha hemû deverên Kurdistanê ku wê desthilatiya wan li gor mada 140 a makezagona Iraqê wê bi referandûmê diyar bibûna bidest xistiye û bibiryar in ku ewê ji wan deran venekşin. Pêşmerge niha di parastinê de ne. Axa Kurdistanê diparêzin û ger DAÎŞ êrişî van deveran nekin ewê jî êrişî wan nekin. Li hemû deverên ku em lê geriyan moralê pêşmergeyan gelekî baş bû. Pêşmerge bi xwe bawer in. Em bi miletê wan deran re axivîn. Ew jî bi hatina pêşmergeyan û ji aramiya ku pêşmergeyan pêk anîne kêfxweş in. Ji îro pêve jî em her tim amadene li gel pêşmergeyan şer bikin. Çi pêwistî hebe emê bê tereddut pêk bînin."

Di heman demê de ciwanên başûrê Kurdistanê jî qampanyayek dan destpêkirin ku tevlî hêzê pêşmerge bibin û bi wan re li eniya şer cih bigrin./ **Hewlêr**

# Hikûmeta nû hat damezrandin


Kabîneya nû

Hikumeta Başûrê Kurdistanê ku piştî hilbijartina hat nûkirin piştî sondxwarinê hat damezrandin. Hikumet bi serokwezîriya Nêçîrvan Barzanî, cîgiriya Qebad Talebanî û gelek wêzîrên nû hat damezrandin û piştî sondxwarinê dest bi pêywirê kir.
Roja 21'ê Îlona 2013'an li Herêma Kurdistanê hilbijartinên parlamentoyê hatin encamdayîn û piştî 9 mehan û di demek ku Iraq ber bi kaosekî nû ve diçe; kabîneya hikûmeta nû hat ragihandin. Di hilbijartinan de partiya serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, PDK yekem, Tevgera Goran duyemîn û partiya serokomarê Iraqê Celal Talabanî bibû sêyemîn.
Piştî 9 mehan hat damezrandin
Hikûmeta nû ya ji 24 wezîrên bê jin pêk tê, îro li parlamentoya Herêma Kurdistanê sonda yasayî xwarin. Nêçîrvan Barzanî bû serokwezîr û kurê Celal Talabanî, Qûbad Talabanî jî ji bo cîgirê serokwezîr hat destnîşankirin. Wezareta pêşmergeyan jî bû para Tevgera Goran. Di hikûmeta nû de, wezîrê Komeleya Îslamî ya Kurdistanê û Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê jî hene.
Navê wezîrên nû wiha ye:
Wezîrên PDK'ê: Serokwezîrê Herêma Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî, wezîrê navxwe Kerîm Şingalî, wezîrê serwetên xwezayî Aştî Hewramî, wezîrê plandanînê Elî Sindî, wezîrê perwerdeyê Piştîwan Sadiq û wezîrê şaredariyan Newroz Mewlûd.
Wezîrên Tevgera Goran: Wezîrê pêşmergeyan Mistefa Seyîd Qadir, wezîrê darayî û aborî Rêbaz Mihemed, wezîrê bazirganî û pîşesaziyê Samal Serdar, wezîrê ewqaf û karûbarên olî Kemal Mûslim.
Wezîrên YNK'ê: Cîgirê serokwezîr Qûbad Talabanî, wezîrê xwendina bilind Yûsif Goran, wezîrê avdanî û nîştecihbûnê Derbas Kosret Resûl, wezîrê tendirûstiyê Dr. Rêkewt Hemereşîd, wezîrê rewşenbîrî Xalid Doskî, wezîrê şehîd û enfalkiriyan Mehmûd Hacî Salih.
Wezîrên Komeleya Îslamî ya Kurdistanê: Wezîrê çandininî û jêderên avê Ebdulstar Mecîd, wezîrê herêmê yê jîngehê Ebdulrehman Ebdulrehîm.
Wezîrên Yekgirtuya Îslamî ya Kurdistanê: Wezîrê elektrîkê Selahedîn Babekir, wezîrê karûbarên civakî Nesredîn Seîd, serokê desteya navçeyên derveyî Herêma Kurdistanê Fatih Sengawî û wezîrê hikûmetê yê ji bo karûbarên parlamentoyê Mihemede Hawdiyanî.



Wezîrên kêmeneteweyan: Wezîrê dadê Sînan Çelebî, Wezîrê Veguhestin û Gihandinê Jonsun Siyaweş
Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî piştî sondxwarinê axivî û soza wê yekê da ku wê hikûmeta nû hikûmetekî şefaf be û wê navendîtiyê bingeh bigre. Barzanî diyar kir ku wê hewl bidin ku şert û mercên pêşmergeyan jî baştir bikin.
Ji Barzanî îlana seferberiyê
Berî ku kabîneya heştemîn a hikûmeta Herêma Kurdistanê were ragihandin, serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî daxuyaniyekî nivîskî belav kir û banga seferberiyê li pêşmergeyên xanenîşbûyî (teqawîtbûyî) û gelê kurd kir. Barzanî di daxuyaniya xwe de wiha got: "Ji ber rewşa niha li ser sînorên Herêma Kurdistan û Iraqê derketî holê, ji bo parastina welatî û destkeftiyên gelê Kurdistanê, pêwîste hemû alî bi berpirsyartî piştgirî û alîkariya pêşmergeyên Kurdistanê û hêzên asayîşa Herêma Kurdistanê bikin."
Mesûd Barzanî di peyama xwe de wiha dibêje: "Ez daxwazê ji hemû pêşmergeyên qehreman ên di qonaxa xanenîşbûyîna xwe dene dikim ku bi armanca piştgiriya ji bo hêzên pêşmerge û xwe amadekirina ji bo her egerekê, peywendî ligel cih û baregehên xwe yên berê bikin ku di nav de xizmeta gel û welatê xwe dikirin. Ji bo vê armancê pêwîste wezareta pêşmergeyan rê û rêbazên kêrhatî bafirînin û erkê wan nîşan bikin."
Barzanî banga alîkariyê li gelê Kurdistanê jî kir ku li gor karînên xwe alîkariya pêşmergeyan bikin û wiha got: "Bi piştgiriya xwedê û îradeya we, hêzên pêşmergeyan amadene xaka Kurdistanê biparêzin û siberojekî geş li pêşiya gelê Kurdistanê ye."
Gefên DAÎŞ'ê bandorek nerênî li jiyana welatiyan a li Hewlêrê jî dike. Di nava heftiyekê de nirxê benzînê ji 500 dînarî derket 1500 dînarê Iraqî. Li Kerûk û herêmên din jî hem nirxê sotemenî û hem jî nirxê zad bi rêjeyekî zêde bilind bû.
Li aliyê din jî bi hezaran kes ji navçeyên din ên Iraqê koçî Herêma Kurdistanê dikin. Ligel kontrolkirina Mûsilê ya ji aliyê DAÎŞ'ê ve, ligel koçberbûna bi hezaran kesî ya ji bo Hewlêr û Dihokê, çeteyên DAÎŞ'ê piraniya bajarê Telehfer ê Tirkmenan jî kontrol kirin û ji vir jî bi hezaran kes koçî navçeyên kurdî dibin. / **Hewlêr**

# Ji bo muzîka kurdî gaveke gerdûnî: MDY



**Bi pêşketina teknolojî û serwextbûna dijital êdî kêm kes bi riya albûm û kasetan guh dide ser mûzîkê. Hema her tişt li ser înternetê tê temaşekirin û guhdarkirin. Kesên ku berhemên wan bi riya dijital tên guhdarkirin an jî temaşekirin heqê telîfa xwe distînin lê hunermendên kurda ji vê dûr in. Her wiha platformeke ku di vê mijarê de bibe derfetek ya bi navê Mezopotamya Dijital Yayıncılık (MDY) di demek nêz de xebatên xwe bi dawî dike û dest bi wêşanê dike.**


RAWÎN STÊRK

Muzîka kurdî ku heta niha kê xwestiye bi têra xwe jê xweriye, belav kiriye û wek malê milletên din hatiye dizîn û stirîn, bi xebata hin şîrketên muzîkê û kesên berpirs li ber deriyê ku ji vê bifilite û li bi riya teknolojiya dijital di nav muzîka cîhanê de cihê xwe bigire ye. Bi navê Mezopotamya Dijital Yayincilik (MDY) xebatên avakirina şîrketekê tên meşandin û di demek nêz de muzîka kurdî dê li dizî û bişavtinê xelas be.

Wek tê zanîn bi taybetî pişti damezrandina komarê komek pisporên muzîkê tê avakirin û temamî Kurdistanê ew kom lêkolînan li ser muzûka kurdî dike û be sedan stranên gelerî yên kurdî vedigerînin tirkî û wek malê tirkan hê jî ev stran bi kar tên. Yan jî stranek gelerî bi aliyê hunermendekî ve tê xwendin û wek malê xwe bi nav dike. Weke van mijaran muzîka kurdî bi pirgirêkên mezin û hejmar zêde ve rû bi rû dijî. Ji bo ku ev pirsgirêk ji holê rabin û muzîka kurdî wek li cîhanê çawayê bi wî avayî bê weşandin bi navê MDY xebatek hatibû destpêkirin û piştî serlêdanên fermî di demek kin de çav li rê ye ku saziyek bê vekirin û mûzika kurdî ji hin pirsgirêkan bê xelaskirin.

MDY ku li ser 3 bingehên wek, edîsyon, tescîlkirin û weşandinê bê avakirin bi beşdariya şîrketên muzîkê ku li Tirkiye xebat dikin, di destpêkê de hewil dida ku di nava saziyên pîşe yên wek MESAM, MÜYAP'e de cih bigire û parastina mafên muzkjen û muzîka gelerî bike lê ji ber nêzikahiyên nijadperest nikarî di nava van saziyan de cih bigire. Li ser vê xebatek ku saziyek bi sere xwe bixebite hatin destpêkirin lê vê carê gelek astengiyên fermî li ber hatin danîn. Tevî van astengiyan MDY di demek nêz de tê avakirin û li muzika kurdî jî dibe xwediyê saziyek ku him li ser muzîkê xabatan bike, him bi riya dijital li cîhanê bi avayekî profesyonel belavke û him jî heqê telîfa ku hê dera muzîka kurdî qet jê fêyde nagire bi vê minasebetê têxe rojeva hunermend û qada muzîkê.

Wek tê zanîn çend malperên gerdûnî yên wek, fizzy, itunes, youtube, amazon û hwd hene ku muzîka cîhanê bi avayekî profesyonel, qelîte tê weşandin û bi vê rayê jî him bestekar, hum hunermend, him aranjor û him jî kesên ku ked didin telîfa xwe distînin. Ji ber ku tu sazî li ser muzîka kurdî xebat an jî şopandinekê nakin, herkes bi kêfa xwe stranên kurdî dixwîne û difiroşe.

MDY bi avakirina malpêrek bi vî rengî dê stranên kurdî û datayek mezin berhevke û bide tomarkirin. Kesên ku bixwezin li vir stranan daxin an jî guh bidin ser, dê bi abonetiyê bikaribin û piştî vê pereyên ku kombûn wê bi rêya MDY li kedkarên wî karî bê belavkirin. Bi vê hincetê kurdimuzik.com di demek nêz de dikeve wêşanê. Wekî din jî edisyona muzîka kurdî jî dê bi aliyê MDY ve bê kirin û muzîka gelerî ji pişavtin û dizînê piçek bê xilaskirin. Bi rêya hunerkomê ku ew jî dê di bin bana MDY'ê de bê avakirin jî dokumantasyona mûzîka kurdî dê bê kirin û ji bo lêkolîn û xebatkirina di vê derbarê de jî wê bûtçe bê veqetandin.

Li gor peymana ku li ser avakirina MDY hatiye amadekirin jî wê her gava vî karî bi avayekî profesyoneli, vekirî û li gor rê û rêbazên gerdûnî bê kirin. Çav li rê ye ku bi vê minasebetê rewşa muzîka kurdî ku li astekê xitimî ye bigihure û kesên ku li ser muzîkê kar dikin bibin xwedî derfetên aborî. Projeya ku bi hevkariya Kom Muzîk, Ses Plak, Medya Muzîk û Aydin Muzîk hate destpêkirin bi piştgiriya hemû şîrketên muzîka kurdî yên din didome. Perpirsên projeyê di nawa hewldana ku ji Başûr jî piştgiriyekê bidestxin. Piştî ku proje bi dawî bû ket faaliyete wê li her çar parçeyên Kurdistanê û diyasporayê jî xebat û lêkolînan bide destpêkirin.

Di derbarê xebatê de Xwediyê Ses Plak Ethem Guner bi rojnameya me re axivî û bal kişand ser giringiya vê mijarê ku ji bo muzîka kurdî xwedî asteke filitandinê ya muzîkê ye. Guner da zanîn ku şîrketên wek MÜ-YAP, MESAM, MSG, MÜYO-BİR ku li Tirkiye di warê muzîkê de serekene, ji hêla kurdî ve xwedî nêzikahiyeke nijadperestin û çi di derheqê kurdî de derkeve paşguh dikin û telîfa muzîsyen û xebatkarên kurd nadin.

Guner wiho dirêjî da axaftina xwe, "Niha êdî wek hun jî zanin hunermend, aranjor, bestekar û kedkarên din yên muzîkê pere ji înternetê qezenc dikin. Li hemû welatan êdî ya sereke qada teknolojiyê ye. Lê di warê kurdî de tu derfetek wiha nîn e û kar û xebatên wan bi avayekî belaş tê belvkirin. Tu saziyên ku mafê wan biparêzin û bişopînin jî nîn in. Nêzikî du salane ku em şîrketên muzîka kurdî hatin cem hev û me xwest ku platformek dijital amadekin. Ew karekî bi zehmet û zor e lê em neçar in ku vê bikin. Kurd li her deverên dinyayê belavbûne û ji bo ku muzîka kurdî bigihêje hemû kurdan tiştekî wiha pêwîst e. Gelek stranên gelerî hin kesan ku nav de muzîsyenên kurd jî hene girtine, xwendine û li binî jî wek malê xwe nivîsîne. Heke ku ew xebat bi dawî bibe emê di vê mijarê de


Ethem Güner

jî xebatê bikin. Li Başûr rewş bêhtir xirab e. Pere heye her tişt heye lê zanîn û xebatek profesyonel nakin. Mebesta me ew e ku em li çar parçeyên Kurdistanê û diyasporayê bi rihekî Kurdistanî ew kar bi ser bikeve."

Guner bi lêvkir ku ji ber ku niha înternet û teknolojî li her malê ye û her kar li ser înternetê ye, guhdakirina muzîkê jî ji sedî 70 bi riya înternetê ye. Ji bo vê jî hunermendên kurd bi derxistina albûm û plakan nikarin qet pere qezenckin. Platformên gerdûnî û yên tirkan jî heqê telîfê nadin kurdan. Guner wiha domkir, "Ji bo vê jî ku ew proje bi temamî ket faaliyetê armanca me ne tenê muzîka kurdî ye, me dil heye ku ji bo hemû zimanên gelên ku mafên wan têne binpêkirin ew platform bibe qadek parastin û pêşxistinê. Me niha bi kurdimuzik.com malpêrek amadekiriye û di rojên pêş de piştî ku danûstandina banke û warê fermî bi dawî bû wê dest bi wêşanê bike. Heya mehêkê malpêr wê vebe. Dû re yekster.com jî wê di wêşanêkeve û bi riya vê malpêrê wê gelek radyo bikaribin wêşana muzîkê ya zindî bikin û wê balavbûna muzîka kurdî bibe xwedî derfetên azadtir. "

# Dayikên Aştiyê li Amedê di rojiyê de ne

Dayikên Aştiyê ku zarokên wan tevli PKK'ê bûne, li ber walîtiya Amedê çalakiya rûniştinê ya bêdem dan destpêkirin. Dayikên Aştiyê bang li dayikên din kirin ku bilan li polîtîkayên dewletê neyên xapandin. Endamên Meclisa Dayikên Aştiyê yên zarokên wan di nav PKK'ê de ne, li Parka Anit ya li hember Walîtiya Amedê çalakiya rûniştinê ya bêdem dan destpêkirin. Dayikan hat ber walîtiyû û pankarta; "Ey serokwezîr, ji bo em bigihêjin zarokên xwe yên li girtîgeh û çiyê qanûnan derxe", "Bila aştî pêk were, zarokên me vegerin" vekirin. Piştre dayikan çalakiya rûniştinê dan destpêkirin û bang li hikûmeta AKP'ê kirin ku di pêvajoya diyalogê de samîmî tevbigere. Dayikan xwestin ku ji bo çareseriya pirsgirêka kurd di pêvajoya ku ji aliyê Rêberê PKK'ê Abdullah Ocalan hatiye destpêkirin qanûn bên derxistin û dayikan diyar kirin ku di çalakiya xwe de bi biryar in.

**'Li hember polîtîkayên dewletê çiya tercîh kirine'**

Li ser navê dayikan, Şehrîzade Anar axivî û xwest ku zarokên wan yên li girtîgehan serbest bên berdan û bang li dayikên ku ji aliyê AKP'ê û MÎT'ê ve tên arastekirin û çalakiyê lidar dixin kirin ku li polîtîkayên dewletê nexapin. Anar wiha got: "Eger dewletê gavên samîmî biavêta zarokên me nediçûn çiyê." Anar destnîşan kir ku zarokên wan li hember politîkayên dewletê çiya tercîh kirine û nayê lêpirsin ka çima zarok çûne çiyê. Her wiha gelek polîs hatin cihê çalakiyê, nasnameya dayikan girtin û bi GBT'ê re derbas kirin û hewl dan ku der barê zarokên dayikan agahî bigirin. / **Amed**






# 'Lîstikên jina' hat ser dikê

Şanogerên jin yên kurd bi armanca rastiya jinan ya di nava civakê de bidin nişandan, serî li hûnerê dan. Derhenera şanoyê Berrîn Çelîk diyar kir ku jin di her civakê de xwedî heman êşê ne.
Jin û hûner. Jinên kurd ji bo rewşa jinê ya di nava civakê de bidin nîşandan û bidin fêm kirin serî li hunera şanoyê didin. Xwendekarên Navenda Çand û Hûnera Cegerxwîn ya Amedê, bi lêstika "Lêstikên Jinan" ku nîviskariya wê ji aliyê Franca Rame ve Darîo Fo û derhêneriya wê jî ji ayliyê Berrîn Çelîk kiriyê derdixin ser dikê. Lîstik, zaxmetî û zordariyên jinan yên di nava jiyanê de radixe pêş çavê hunerhezan.
Lîstika ji bi tirkî, kurdî û kirmançî hatiye amadekirin, ji aliyê listikvanên şanoyê Aysel Arslan, Bircan Kaygusuzlar, Nurcan Yaprak û Remziye Aktan, ve tê lîstin. Di lîstikê de profîlên jiyan yên cuda ku di nava civakê de tê nasîn tên nirxandin. Derûniya van jînên ku wekî profîlên "Jinên malê","Jinên karker","Jinên şoreşker" û "Jina rastî tecavuza polîsan hatiye" hatine bijartin, bi zimanekî nazik hatiye şîrovekirin. Derhenera Şanoyê Berrîn Çelîk di derheqê şanoyê de ji me re kala mîjarê kir. Çelîk, destnîşan kir ku mijara şanoyê her çi qas li ser rewşa jinê hatibe pevxistin (kurgu) jî, di rastiya xwe de rastiya zihniyeta mêrê ye û bi armanca vê zihniyetê bi mêran bidin fêm kirin. Çelîk di gotinên xwe de wiha qala mijara şanoyê kir: "Zihnîyeta zilamiyê bi destê pergalê hatiyê avakirin. Li ser jinê gelek mafên jiyanê asteng dikin, lê mixabin dikin lê nizanin ku çima dikin û yan jî nizanin ku bi rastî canê jinê jî diêşe. Ji ber vê yeke me jî biyara şanoyeke wiha da meşandin. Rastî û rewşa jinê ancax bi vê şeklê wê bê fêmkirin."

**'Şano eyneya civakê ye'**



Çelîk, bi lêv kir ku şano eyneya nava çivakê ye û gotinên xwe wiha domand: "Huner rastiya nava çivakê ye, hartim dema ku mirov şano ango stranek temaşe dike xwe û hêstên xwe têde dibîne. Ji ber vê yeke jî me tişteke wiha fikîrî û li dar xist,"

**'Tecawuz rastiya zilam e'**

Çelîk, bal kişan li ser mîjara ku ya herî bala temaşevanana kişand û hat rexne kirin û wiha got: "Di nava lêstîkên me ya herî dilê temaşevanan êşand sehmeya tecawuzê bû. Jina ku jî alî 5 polîsan ve rastî tecawuzê dihat û bi gotineke zelal di anî ziman ji hêla temaşevanên mêr pir dihat rexne kirin jî ber ku rastiya wan e û rastiya xwe di şanoyê didît. Di vê sehneyê de her mêrek ji sedî sad xwe di vê sahneyê de didit û xalapirsek di mejiyê wan de dihat çêkirin."

**'Şano li her derê Kurdîstanê tê lîstin'**

Çelîk, di dawiyê de bahsa armanca şanoyê ku li her derê Kurdîstanê dide temaşekirin kir û gotinên wiha bi dawî kir: "Aramanca me ya herî sereke ew bû ku rewşa jinê li her bajar, bajarok, gund û her cihên cuda bi din nişandan û fêm kirin." **Amed**

# Li Amedê şahiya zarokan

**Zarokên Amedê bi minasebeta bernameya dawiya salê ya Konserwatûara Aram Tîgran hatin ba hev û bi stran, govend, reqs û mûzîkê coşiyan.**

Li Amedê 3. şahiyên Konservatuara Bajêr a Aram Tîgran ku bi dirûşma "Haydê Amedê Roj Roja Hunerê ye" li dar ket, bi performansa zarokan bi dawî hat. Zarokan bi govend, koro û atolyeya rîtma xwezayî gel stranan kêfeke xweş kir. Hevşaredara Bajarê Mezin Gultan Kişanak got, "Sala bê em ê bi hezar zarokan beşdarî vê şahiyê bibin û rekorê bişkênin."...

Şahiyên dawiya salê ya Konservatuara Aram Tîgran li Hêwana Şano ya Şaredariya Bajarê Mezin bi şahiya zarokan bi dawî hat. 130 zarokên di navbera 4-13 saliyê de ku perwerdekar Şêrko Kanîwar ew perwerde kirin bi Orkestraya Trîtîma Xwezayî derketin pêş bîneran. Zarokên ku ji satil, zerka mast, qutiyên karton, şîşe, pet şîşe, qoşxane, tevsîk, kevçî û klavyeya xirabe ya kompûterê ji xwe re amûrên jenandinê peyda kirin bi gotina "Em Şer Naxwazin" dawî li pêşandana xwe anîn.



Piştre jî koro û orkestraya ji 55 zarokên di navbera 7-15 salî de pêk tê û perwerdekar Evren Koç, Arzu Pamukçu, Hüseyin Ceylan, Esra Dolak, Mizgin Ateş, Recep Çiftçi û Ali Tekbaş ew perwerde kirin derketin ser dikê. Piştî ku van zarokan bi stranên xwe demeke xweş borandin bi govenda xwe ji aliyê bîneran ve bi dilxweşî hatin pêşwazîkirin.

Piştî konserê Hevserokê BDPê Selahattin Demîrtaş û Hevşaredara Bajarê Mezin Gultan Kişanak, yek bi yek zarok maçî kirin û kulîlk dane wan. Demîrtaş diyar kir ku bi enerjiya wî ji zarokan girtî demeke xweş borandiye û got, "Ev zarok weke dê û bavê me dê zilmê nebînin. Ew ê her dem bi şox û şeng bin. Ew ê vî welatî xweş û geş bikin û dê me jî serfiraz bikin." Demîrtaş perwerdekarên konservatuarê pîroz kirin û got, "Ligel ewçend desttengiyan jî, bi dil û can dixebitin û weha karên mezin dikin." Demîrtaş spasiya Setokatiya Beşa Çand û Turîzmê kir û got ku ew hêvîdar in ku sala bê evan xebatan bibin nav taxan û bêhtir zarokan tê de beşdar bikin.

**Her bijî zarokên kurdan**

Hevşaredar Gultan Kişanak jî diyar kir ku wê bi kelecan û bi coş li performansa zarokan temaşe kiriye û hemû kesên di ber vî karî de keda wan heye spasiya wan kir. Kişanak da zanîn ku ew ê sala bê xwe bigihînin hezar zarokan û di vî warî de rekorê bişikênin û got, "Sala bê em ê bi hezar zarokî li stadyumê hevdu bibînin." Kişanak diyar kir ku zarokên beşdarî vê çalakiyê bûne dê şûmiyan nekin û got, "Ji ber ku ew hemû enerjiya xwe di van çalakiyan de dirijin. Her bijî zarokên kurdan."





# Zarokan hem nivîsî hem lîstin!

Lîstikên şanoyê ku ji aliyê Weqfa Koçberiyê ve ji bo zarokan hatin amadekirin, li Amedê hat pêşandan û temaşevanan eleqeyek mezin nîşanî lîstikê dan.

Lîstikên şanoyê yên zarokan a ku ji aliyê Weqfa Koçberiyê û bi piştgirya Neteweyên Yekbûyî (NY) ve ji bo zarokan hatin amadekirin li Salona Şanoyê ya Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê hatin pêşandin. Ligel gelek malbat û zarokan, Hevşaredara Rezanê Bîrsen Kaya û gelek endam û rêvebirên Saziyên Sivîl ên Amedê jî lîstik temaşe kirin. Lîstikên şanoyê piştî encama xebatekê salekê hatin amadekirin û ji aliyê zarokan ve hatin nivîsandin. Yek jê zaravaya kirmançkî, 4 lîstikên şanoyê ku hatin pêşkêşkirin ji aliyê temaşevanan ve rastî eleqeyek mezin hat û lîstikvaniya zarokan jî bi çepik û tililiyan hat ecibandin. Lîstikvanên biçûk, bi lîstikên xwe yên şanoyê polîtîkayên li ser zarokan tên meşandin nîşan dan û bal kişandin li ser mijarên wekî zewaca di temenê biçûk de, zarokên ku rastî şîdetê tên, zarokên karker. Di heman demê de li ser ekolojî û tehrîpkirina xwezayê jî lîstikek hat pêşandan.



Piştî pêşkêşkirina lîstikên şanoyê bername bi kokteylê qediya.



# Mîrê Bilûrê hat Amedê

**Galaya belgefîlma bi navê "Welatê Me Kurdistan e" ku behsa jiyan û muzîka Egîdê Cimo ku wek Mîrê Bilûrê tê nasîn dike, li Amedê hate kirin.**



Di çarçoveya Rojên Hunerê yên Konservatura Aram Tîgran de galaya belgefîlma hunerŏendê Êzdî Egîdê Cimo li Hêwana Şanoyê ya Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê hate pêkanîn. Belgefîm ji aliyê Konservatuara Aram Tîgran û Komeleya akademiya Sînemayê ya Rojhilata Navîn ve bi hevkarî hatiye çêkirin û derhêneriya wê jî Îbrahîm Yildirim dike.
Fîlm 45 deqe ye û behsa serpêhatiyên hunermend dike û qeydên der barê jiyan, çand û hunera kurdan li xwe digire. Di belgefîlmê de strana navdar a Welatê Me Kurdistan e tê helsengrandin û nîşan dide ku danerê vê stranê hunermendê 83 salî xwedî bîreke civakî û çandî ya kurdewarîyê ye. Di fîlmê de tê destnîşankirin ku hunermend 35 salên xwe di Radyoya Erîvanê de hem operatoriyê hem jî aranjehiyê dike û wek mey, birûr û zirnebêj xebatên xwe yên hunerî dibe serî. Di fîlmê de hunermend dibêje, "gelekî heke şanoya wî, orkestraya wî, wêjeya wî hebe, dewleta wî jî heye." Ev fîlm berhema salekê ye û ji sê xelekan pêk tê: Ermenîstan, Wan û Amed. Hunermend xelkê Qelqeliya Wanê ye û jiyana xwe li Erîvan, Boskosê, Gexard û Elegezê borandiye û ku di fîlmê de ev dever hatine kişandin. Kêşanên fîlmê 16 roj li Ermenistanê, 2 roj li Wanê û 23 roj jî li Amedê hatien kirin û di beşa Amedê de tê destnîşankirin ku hunermend sala 2013ê ji bo şahiya Konservatuara Aram Tîgran hatiye Amedê û 23 rojan ders daye xwendekaran û gel wan derketiye ser konserê.

**Rastî nexweş dikeve, lê namire**

Derhênerê fîlmê Îbrahîm Yildirim da zanîn ku ev belgefîlm ji bo wî ezmûneke gelekî baş bûye û di dema kişandinê de 2 mehan gel hunermend maye. Yildirim bal kişand ku Cimo hunera xwe xistiye nav jiyana xwe ya rojane jî û got, "Egîdê Cimo li ser sehneyê çawa ye li nav jiyanê jî her wisa ye." Yildirim da zanîn ku hunermendê navdar der barê hevalên xwe yên naskirî Garabêtê Xaço û Aramê Dîgran de jî gelek tişt gel wan parve kirine û got, "Em negihîştin ku wna hunermendan jî bi belgefîlmên xwe bikêşin lê bi saya Egîdê Cimo em der barê wan de bûne xwedî agahiyên têr û tesel." Yildirim gotina hunermend, "rastî nexweş dikeve lê namire" ku di fîlmê de bi kar aniye jî biş bîr xist û got, "Hunermend gelekî tenê maye. Me jî hewl da em piçekî be jî deynê xwe ser hunermendê hêja rakin."

**Cimo: Hêj gelek karê me heye**

Paşî şanoger Kemal Ulusoy Egîdê Cimo gazî ser dikê kir û xwest ew jî hestên xwe parve bike. Cimo, diyar kir ku xebateke weha ew gelekî kêfxweş kiriye, arşîv û mîrateyeke girîng heye ku ji gelê kurd re bête hiştin û spasiya derhêner Îbrahîm Yildirim kir. Hunermendî got, "Hêj gelek tişt mane ku em bikin."
Serokê beşa Çand û Turîzmê Muharrem Cebe jî Egîdê Cimo û derhêner Yildirim pîroz kirin û da zanîn ku ew bi dengê radyoya Erîvanê mezin bûne. Cebe weha got, "Egîdê Cimo, Fatma Îsa û hemû dengbêj di dilê me de ne û ew bûne parçeyek jiyana me ya kurdewarî. Gava em biçûk bûn, em diçûn ber pezî me radyoyek bi xwe re digerand, em li benda saeta Erîvanê disekinîn. Îro li Amedê ew dengbêj bi me re ne."
Piştî axaftinan Egîdê Cimo û stranbêj Rizgan Hasoyan bi hev re stranên xwe gotin. /**Amed**



# Bêkes bi kurmancî dibarîne




**Dîwana helbestvanê kurd ku wek hîmê helbesta kurdî ya hemdem tê naskirin bi kurmancî cara yekem hate wergerandin û ji aliyê Wêşanxaneya Ronahî ve hat çapkirin. Şêrko Bêkes ku nêzî 20 pirtûkên wî yên helbesta hatine çapkirin û li gelek zimanên cîhanê jî hatine wergerandin. Bêkes êdî bi kurmancî jî dibarîne...**

Helbestên Şêrko Bêkes bi wergera Mûhsîn Ozdemîr û Sîrwan Rehîm ji Weşanxaneya Ronahîyê derketin. Kitêba ku navê wê "Ji Başûr Barana Helbestê" ye li bakur di demeke pir kin de gêhişt ber destê bi sedan xwendevanan. Kurê Şêrko Bêkes, Helo Şêrko Bêkes, di pêşgotina kitêbê de dibê: ‘'Ey kurên bakurê welatê min! Hûn hevalê azar û hêviyên bavê min in, lewma Şêrko û helbestên wî mîna çirayên ser ‘'Qendîl"ê berdewam tîrêjê didin û di bîranîna vê axê de jî her bi awayekî zindî dimînin"
Yek ji şairên mezin ên kurdan Şêrko Bêkes di 2ê gulana 1940î de li taxa Goyjea Silêmaniyê hatiye dinê. Lawê helbestvanê navdar Faiq Evdilla Bêkes û Şefiqe Seîdî Westa Hesen bûye. Wî xwendina xwe ya bingehîn û navîn li Silêmanî û Bexdayê temam kiriye. Bêkes ji 17 saliya xwe ve dest bi nivîsandina helbestan kiriye û cara pêşîn helbestên wî di kovara Jîn de li Silêmaniyê belav bûne. Li Bexdayê zanîngeh jî qedandiye û kitêba xwe ya yekem a bi navê Tirîfey jî dîsa li vî bajarî di sala 1968an de çap kiriye. Di sala 1969an de pirtûka xwe ya duyem jî derxistiye. Di navbera salên 1965-1987an de pêşmerge bû û di heman deme de jî li radyoya bi navê Dengê Şoreşê de xebitî. Piştî têkçûna Şoreşa Îlona 1974an, hikûmeta Iraqê Bêkes şand sirgûnê. Di sala 1979an de Bêkes vedigere Silêmaniyê. Şêrko Bêkes di sala 1984an de beşdarî serhildana li başûrê Kurdistanê dibe, careke din din bi çiyayên Kurdistanê dikeve û dibe pêşmerge. Di 1986an de ber bi derveyî welêt wek penaber çû Îtalya û Swêdê. Li Swêdê bû endamê Komelaya Nivîskarên Swêdê û PENa Swêdî.
Di 1991 / 1992an de li yekem kabîneya hikûmeta Herêma Kurdistanê dibe wekîlê rewşenbîriyê, lê piştî wezîriya du salan, ji ber nedemokratîkbûna parlamenê wî îstîfa kir û vegeriya Swêdê.
Şêrko Bêkes piştî ku nêzîkî sê mehan û nîv hatibû dermankirin, di 4ê tebaxa 2013an de li nexweşxaneya Karolînska ya Stockholma paytexta Swêdê ji ber nexweşiya pençeşêra pişikan çûye ber dilovaniya Xwedê. Şairê gewre yê kurd k udi 73 saliya temenê xwe de bû, li Parka Azadî ya Silêmaniyê veşartî ye. /**Amed**

# Muzîk wek avê zelal e û diherike



**Dema Sîdar li Bursayê di qonsereke de li gîtarê dixe doz lê tê vekirin û derdikeve dadgehê, bûyera Mûsa Anter ku dadger jê re gotibû te bi kurdî li fîqê xistiye, tê serê wî jî. Dadger ji Sîdar re jî dibê, te bi kurdî li gitîra xistiye û çar meh cezayê girtîgehê jê re dibire.**



AZİZ TEKİN

Piştî şerê dûyem yê cîhanê li tevayê dinyayê guherînên civakî, siyasî û aborî pêk hatin. Van guherînên civakî bandora xwe li mûzîkê jî kir. Di mûzîkê de form û rêbazên nû hatin ceribandin. Ew formên nû di muzîka kurdî de jî hat ceribandin û hin berhem bi van forman hat dayîn. Ku meriv li dîroka rocka kurdî dinêre di destpêkê de Koma Wetan dibîne. Piştî wê hin komên cihê ketin nav mûzîka kurdî. Ji wan kesan yek jî Sîdar e ku albûma xwe ya yekem 'Bêje' derçû. Sîdar di 'Bêje'yê de bi piranî li ser hestên xwe yê kesane pirsgirêkên civakî disekine û vana bi şêwazek nû dide der. Va ye hevpêyvîna ku me bi Sîdar re kir.

**Bi hinceta ku we 'bi kurdî' li gîtarê xistiye 4 meh ceza li we birîn. Hûn dikarin hinek behsa vê bûyerê bikin?**

Di 1999'an de ez çûbûm qonsereke, di dawiya qonserê de ji me re doz hat vekirin lê haya me jê tunebû. Hatin em ji malê birin. 4 roj li qereqolê em di bin çavan de man, dû re derketin dadgehê. Me li dadgehê got sûcê me çiye? Wê demê jî demek zehmet bû. Wê demê kê tiştek bigota, kurd jî neba ew dibirin dikirin hundir. Gotin nizanim we stran gotiye. Kilamên qet me negotiye jî xistibûn naveroka îddianameyê. Min got na me ew negotiye, hetta min qet negotiye, ez li gîtarê dixim. Qet li min nenêrî û got; lê te kurmancî lêxistiye. Wê demê di Gundemê de jî derket, bi navê; Ji gîtara kurdî re heps. Dibe ku bê li nava kurda li tu cihê tiştek waha tuneye.

**Di van demên dawî de li ser mûzîka kurdî şîroveyên ku ji bêrîka xwe dixwe tê kirin. Hûn niha mûzîka kurdî di çi rewşê de dibînin û hûn çi pêşniyaran dikin?**

Mûzîk tiştek zindî ye, kes nikare li ber bisekine. Tu mûzîkê çiqas xirap çêkî jî ew rêya xwe dibîne. Ku tu niha li mûzîka kurdî dinêrî li gor deh salên ewil paş da maye. Li Tirkiyê 20 sal ewil tarza wiha fantazî arabesk hebû lê di nava kurdan de nû derdikeve. Divê mûzîk tiştekî bide ser tiştên heyî. Çi dibe bila bibe dibê tiştek lê were zêdekirin. Mûzîkvanên me haya wan zêde ji mûzîka dinyayê tune, ketine odeyek tenê di pencereya xwe de dinêrin. Ji xwe dinya bûye odeyek. Yên me pirî caran tiştan nabînin. Tenê mûzîk niha bûye qelebalix, divê tiştek lê zêde bibe. Tenê deng têr nake, tu çi dibêjî, derdê te çiye? Divê pêşî tu felsefeya wê dêynî, xwe nas bikî. Ez kî me, çi dixwazim û gotina min ji jiyanê re çiye? Tenê deng niha têrê nake gere tarza te hebe. Helbet gere sitandartek wê hebe û meriv li dor wê bigere. Kêmasî heye lê evê bê derbaskirin. Min di serî de jî got mûzîk weka avê ye kes nikare pêşî bigre. Mehmet Arif Cizrawî çend sal ewil çêkir em hêjî ji kaniya wî vedixun. Niha av şêlû ye, ewê zelal bibe çi tiştê ku şêlû dikin hebin ewê ber jêr de herin. Kes nikare ji kesî re bêje bila tunebin, bila her kes hebe lê divê asta mûzîkê nekeve. Bi rastî ev hinek girêdayê jiyana kurda ye jî, jiyana meriv çawa be hûnera meriv jî wisa ye. Ji ber ku jiyana me rûneniştiye, em nikarin rehetî bêhnek bistînin û em bêjin çi dikin waha nêvî dimîne. Hemû beşê hûnera me wisa ye. Van pirsgirêkên ku em dijîn bi piranî bi trajediya me ve girêdayîne.




**Ku em ji Koma Wetan bigrin hetanî niha hûn dikarin ji bo rocka kurdî çi bibêjin? Hûn mûzîka xwe li ku derê didin rûniştandin?**

Li dinyayê piştî şerê dûyem li Îngîlterê dest pê dike. Tu li Koma Wetan dinêrî ew jî di heman demê de dest pê kiriye. Ku tu di wê demê de wê pêşketinê bibînî ji bo kurdî tiştek baş e. Di jiyana min de zêde mûzîka kurdî, dengbêjî cih negirtiye lê hestê min bi tevayî kurmancî ne. Cihê ez dixwazim herim jî wê der e ji ber ku ez azadbûna xwe di wir de dibînim. Ku ez bi kurdî li dinyayê dinêrim baştir hilm distînim. Destpêk bi rastî jî baş bûye lê piştî wê tişt neketiye ser, hetanî van salên dawî. Ku Kerem Gerdenzerî hat vir dît. Potansiyela ku rocka kurdî bixe jiyana xwe nîne, ji ber ku rock mûzîkek bajarî ye. Ku em li jiyana kurda dinêrin bajarbûnî zêde nîne. Piştî salên nodî hin kom derketin bi awazên rojavayî û wan hin tişt kirine. Hinek bi bandora tevgera netewî ev ket jiyana me. Dinya jî êdî piçûk bû her kes bi rehetî dikare xwe bigîne hev. Koma Wetan astek pir bilind bû lê piştî wê kesên di wê astê de derneketin. Niha komên baş dixebitin hene. Raste hinek amatorî başe lê ji me re profesyonelî jî lazem e.

**Mûzîka te ji motîfên kevneşopî bêhtir formên nû dihewîne gelo bi formên kevn rock nayê çêkirin?**

Helbet meriv dikare çêbike. Bi evayek mûzîka netewî jî dikare bikeve navê. Di armaniyê de elektro gîtar jî bass jî dikare bikevê. Ez wiha difikirim; yên kevn ji xwe tarzek ceribandine û bi serkeftî çêkirine. Em dikarin tiştek nû û serkeftî çi li ser wan zêde bikin. Em li doh najîn, em di îro de ne. Tu çi jiyabî divê ew hebe di berhema te de. Mirov dibê dema dijîn ji kesan re bibêjin, herî baş meriv dikare hestê roja xwe bide der. Her mirov teybet e divê serboriya xwe ya kesane bibêje. Raste Cover hene lê ez bi xwe gotinên nû baştir dibînim. Ez di qonseran de stranên kevn jî dibêjim lê di albûman de tenê taeza xwe.

**Hûn di derbarê pêşketinên di demên dawî de li Tirkiyê çi difikirin?**

Tenê li Kurdistan û Tiriye ne li tevayê dinyayê pirsgirêkek azadbûnê heye. Her kes dijî lê kurd hinek girantir dijîn. Pergel êdî nikarin pêdiviyên mirovan bînin cih. Ji ber ku pergal nikare van pêdiviyan bîne cih li pirî cîha teqîna hêrsê çêdibe. Divê vê demê azadiya kesane li pêş be lê li her cihê sînor tê dayîn, her kes dikişe nava qalikê xwe. Berê Sadamek hebû lê anha bi hezaran Sadam derketine. Bi rastî ev ne pirsgirêka Rojhilata Navîn e, ev encama hişê Ewropayê ye. Em di bajaran de di nav betonan de man, rihê me ji me qetiya. Pêvendiya me bi xwezayê re qut bû. Pergal mirova dixe nav çargoşek kî hewl bide ku ji wir derkeve bi darên destê xwe de li serê wan dixin. Mirov hatine asta teqînê bi van tevgeran pergala. Kurd viya zêdetir dijîn lê di heman demê de bi tevayê dinyayê dijî. Agirek pêket û em tevî dişewitin.

**Xebatên we yên hûnerî dê çawa berdewam bikin?**

Albûma me nû derket enerjiya min bi tevayî li ser wê ye. Navek nû albûmek nû hetanî cihê xwe bigre jêra dem lazim e. Ez niha ji stranan re qilîb çêdikim. Dilê min heye di qonseran de van stranan ji guhdarvanan re bibêjim. Ku hinek barê xwe sivik bikim dest bi xebatên albûma nû bikim. Ez gotinên stranên xwe dinivisînim. Ez jiyanek bi xwezayê re, bi aştiyê, bi kenê dixwazim û di stranên xwe de jî qala vana dikim. Niha çend heb mûzîkjenê baş albûmek nû derdixin, ez jî di wir de çend stranan dibêm.